12

وەزیری پێشمەرگەی حکومەتی کوردستان

"قەت" بەشداریی شەڕی ناوخۆ ناکاتەوە



**Kîwex Kurdistan** cara 4. bû şampiyon

▶rûpel 8






# Rûdaw

ÇAPA EWROPA

Rojnameya Kurdên Diyaspora

Deutschland 1,50 Euro | Österreich 1,50 | Belgium 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Norway 15 NOK | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK | Hejmar / Nr. 104 | 14 Tîrmeh / Juli 2011


## Burkay bilêta xwe birî



Siyasetmedar û nivîskarê Kurd Kemal Burkay hefteya borî bilêta xwe ya vegera welat birî. Piştî 31 salên li derveyî welat, Burkay wê 30ê tîrmehê biçe Tirkiyeyê. Burkay li Stockholmê ji Rûdawê re ragihand ku niyeta wî ya siyasetê tune û dixwaze gundê xwe, Dêrsimê, Xarpêtê û gelek cihên din ên Kurdistanê, Enqere û Stenbolê bibîne û got "Ez ê bir û baweriyên xwe neguherînim û li ber neyarê xwe serê xwe netewînim."

▶2

Û CHP jî li xwe mikur hat:

# Kêşeya kurd siyasî ye!

11 »



**Kurdên older**

**Bawermendên kurd amadekariya partiyek muhafezekar û Kurdistanî dikin**

▶3

**Civak**

**Kurd ji jinên bejinzirav hez nakin**

▶15

**Sineta keçan**

**Bi piştgiriya rêxistina WADI, Kurdistan li Rojhilata Navîn yekemîn e** ▶13

## "Beriya mirinê dixwazim birayê xwe bibînim"

Şahîn Mohammad Saleh beriya çend hefteyan çû cem pizîşkê xwe, lê diyagnoza pizîşk rêça jiyana wî serobin kir: Pizîşk ji Şahînê 37 salî re got ku di serê wî de tûmorek peyda bûye û tedawîkirina wî tûmorî jî ne gengaz e. Niha Şahîn li nexweşxaneyeke bajarê Munchenê ye û rewşa wî gelekî xirab e û roj bi roj xirabtir dibe. Lê tevî tenduristiya xirab, Şahîn daxwaziya xwe ya dawî gihand pizîşk û dostên xwe, ew jî dîtina birayê wî ye ku li Başûrê Kurdistanê dijî. Li ser vê daxwaza wî, komela kurdan a li bajarê Munchenê ket dewrê û ji bo arîkarîkirinê serî li balyozxaneya Almanyayê li Hewlêrê da. Balyozxaneyê diyar kir ku ew ê ji bo dana vîzeyê arîkariyê bike, lê diyar bû ku êdî biyarê Şahîn Mohammad Saleh naxwaze wî bibîne.

▶6















Great Britain

## Siyasetmedar û nivîskarê kurd, Kemal Burkay:

# "Hêvîdar im siyaseta kurdan hewcedarî kalekî wekî min 74 salî nebe!"



Wêne: Rûdaw

Siyasetmedar û nivîskarê kurd Kemal Burkay di civaka kurdan de herdem yek ji fîgurên sereke bûye. Tevî ku yek ji "giregirên" siyaseta kurd bûye, herwiha hêla wî ya edebî, rewşenbîrî û nivîskariyê jî bi têra xwe deng daye. Burkayê ku salên dûvedirêj Serokatiya Partiya Sosyalîst a Kurdistanê (PSK) kiriye, mohra xwe li bin gelek berhemên edebî daye.

Burkay hefteya derbasbûyî bilêta xwe ya vegera welat birî. Piştî 31 salên li derveyî welat, ew ê 30'ê Tîrmehê roja şemîyê here Tirkiyeyê. Di pêvajoya ku amadekariyên vegera welat dikir de, li Stockholmê em ligel Kemal Burkay axivîn….

***

**Birêz Burkay di Karesata Dêrsimê de hûn yek salî bûn, we çavên xwe di Komkujiya 1938'an de vekiriye. Wê karesatê bandoreke çawa li malbata we kir?**

Ji malbata me re "Mala Eliyê Zeynê" tê gotin. Erdê me kêm bû. Bavê min mamostê gund bû. Çend xwîşk û birayên min hê dema zarok bûn mirin. Em du xwişk û du bira man. Em ji Eşîra Şadiyan in. Di Serhildana Dêrsimê de hatime dinyayê. Diya min digot: "Gava dengê topan dihat, tu di dergûşê de bûyî." Diya min ji navenda Dêrsimê ji eşîra Alan e. Merivên wê, ango xalanên min piştî şer kom kirine û kuştine.

Her çiqas herêma me û eşîrên wek Şadî, Îzol û Xiran di şer de cih ne girtine jî, piştî ku şer diqede û dewlet zora Dêrsimê dibe, hêzên leşkeri tên hêla me jî. Hingê bavê min jî di nav de, hin gundî ji tirsan direvin û xwe vedişêrin. Ji gundê me jî du kes bi vî awayi hatine kuştin. Bêjî nebêjî bandora vê karesatê li ser min heye.

**Roja ku yekem car we gav avêt nav axa Ewropayê tê bîra we? Dikarin behsa hestên xwe yên wan rojan bikin?**

Min du caran welat terikand û ji ser Sûrîyê û Libnanê hatim Ewropayê. Di sala 1972 û sala 1980yî de. Herdu jî ji ber derbeya leşkerî bûn.

Cara yekem havîna 1972yê bû. Me li ser sînor, xwe ji tirênê avêt û em reviyan. Li Sûriyeyê em hatin girtin û bi qasî 15 rojan jî hepis bû para me. Piştre li Beyrûdê çend meh mam. Cara duyem bihara 1980ê bû. Ez li hêla Cizîrê derbasî hêla Sûriyeyê bûm, ji wir dîsa çûm Libnanê. Paşê bi alîkariya şûîyên Îraqê çûm Ewropayê. Beyrûd warê şer bû. Ji ber sedemên ewlehiyê ji mal dernediketim. Rojek ji rojan bi balafirekê hatim Zurich a Siwîsreyê. Dawiya nîsanê bû...

**Biryardayîna terkeseriya welat ji ber çi rû da? Gava we welat terikand, texmîn dikir ku wê hewçend dirêj li Ewropayê bimînin?**

Di wan rojan de dijî partiya me operasyoneke mezin hebû û gelek hevalên me hatibûn girtin. Hevalan biryar dabû ku ez derkevim. Ji xwe çend meh piştî wê derbeya leşkerî çêbû û bi hezaran kesên wekî min jî neçarî derketin derveyî welat. Helbet me texmîn nedikir ku em ê hewçend sal li xerîbiyê bimînin.

**Bi qasî siyasetmedariyê jiyana we ya hunerî jî balkêş e û tê zanîn. Gelo hûn qet fikirîn, rojek tercîha xwe ji yekê ji wan bikin?**

Di destpêkê de bala min zêdetir li ser edebiyatê bû. Helbet bala min pir li ser pirsa kurd û bir û bawerîyên civakî yan sosyalîstî jî hebû. Lê belê nedihat bîra min ku ez ê rojekê bikevim nav refên partiyên siyasî û kar bikim, yan jî partiyeke siyasî ava bikim. Lê em di welatek û civakeke wisa de dijîn ku di nav agir û şewatekê de ye. Lê belê her çiqas siyasetê gelek waxtê min girt jî, min dev ji karên edebî berneda. Karên siyasî û edebî di jiyana min de bi hev keliyane. Ev dudilî, ango "edebiyat yan siyaset?" di destpêkê de derket pêş min. Lê piştî ku ketim nava siyasetê êdî min herdu karan bi hevre meşandin.

> **Di destpêkê de bala min zêdetir li ser edebiyatê bû, nedihat bîra min ku ez ê rojekê partiyeke siyasî ava bikim…**

**Kemal Burkay bêhtir xwe siyasetmedar dibîne an mirovê edebiyatê?**

Herdu jî. Carina du nasname, carina jî sê ji bo mirovan giranbuha ne, mîna dê û bav, mina kur û keç... Tu nikarî yekê ji ser yê dinê re bigirî.

**Çi nivîsar, çi helbest yekem car tên bîra we, li kû û kîjan salê hate weşandin?**

Şiîra min a pêşî "Yolcu" di sala 1960î de di kovara 'Yeditepe' da hat weşandin. Ev kovar li Stenbolê derdiket. Ev şiîr di tu kitêbên min ên weşandî de tuneye. Şiîreke min a din bi navê 'Rêvingî' heye, ku Nîlufer Akbalê kiriye stran.

**Piştî 31 salan hûn vedigerin welat. Piştî ewqas salên ji welêt dûr, gava hûn herin yekem tiştê ku hûn dixwazî bikin çi ye?**

Gelek tişt hene ku di vegerê de dixwazim bikim. Dixwazim nas û dostên xwe, merivên xwe, hevalên xwe bibînim. Li welat gelek ciyên ku zarokatiya min, jiyana min lê derbas bûye dixwazim bibînim. Dixwazim gundê xwe, Dêrsimê, Xarpêtê û gelek cihên din ên Kurdistanê, heta Enqere û Stenbolê bibînim...

**Tiştê ku hûn ê di vegerê de bi ti awayî nekin çi ye?**

Ez ê bi tu awayî bir û baweriyên xwe neguherînim û li ber neyarê xwe serê xwe netewînim…

**Cih û devera ku hûn dixwazin jiyana xwe lê berdewam bikin, diyar e gelo?**

Hê ne diyar e. Ez ê di vî warî de biryara xwe paşê bidim.

**Gelo Kevneserokê PSK'ê, difikire careke din vegere nava siyasetê?**

Niyeteke min a wisa tuneye, lê eger rewş, wekî salên 1960'î mecbûr bike, vêca ew dibe tiştekî din... Hêvîdar im siyaseta kurdan û tirkan hewcedarî kalekî wekî min 74 salî nebe!

**Di jiyana cenabê te de kiryarek heye ku hûn jê stûxwar in û dibêjin; "Xwezî min ew nekira."**

Şikir di jiyana min a siyasî de jî, di ya taybet de jî kiryareke wisa, ku pê stûxwar bibim tuneye. Helbet hinek tişt hene ku dibêjim; 'xwezi min nekira û negota!' Tiştên wiha jî min venaşartine û ew di bîranînên min de hene.

**24 saetên we çawa derbas dibin?**

Wextê min piranî bi xwendin û nivîsandinê derbas dibe. Lê ez ji vê jiyanê razî me. Roja ku kar nekim aciz dibim, wekî ku tiştekî ji min kêm be... Ev salek e ku min li ser berhemeke edebî kar nekiriye, lê min du cildên hatiratên xwe ango cildê 3 û 4 ji bo çapê amade kirine. Karekî giran bû. Vê gavê azad im!

***Hevpeyvîn: Salihê Kevirbirî***



**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

**Redaksiyon**
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Mihemed Tahir
mtahir2011@windowslive.com

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Îdare û belavkirin**
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çîftçî

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



## Tirkiye jineke kurd a 102 salî dide dadgehê

*Rûdaw – Bi tohmeta propagandakirina bo PKKê, dozgerê giştî yê Tatwanê lêkolînê ligel jinekê ku temenê wê 102 sal in dike.*
*Lalixan Akbay diya gerîllayekî PKKê bi navê Mehmet Raûf Akbay e ku berî çend salan di şerekî de jiyana xwe ji dest daye. Par li Tatwanê ya girêdayî Bedlîsê, bo vî gerîllayî mewlûdek hat sazkirin ku diya wî jî tê de amade bû. Kurê Lalixan, Tevfîq Akbay, derbarê helwêsta dozgerê giştî de got: "Çawa dibe dayikek bi wê yekê bê tawanbarkirin ku tevî mewlûda kurê xwe bûye, tevî ku temenê wê 102 sal in û felcbûyî ye." Lalixan Akbay nikare biaxive, axaftinan fahm nake û nikare li ser lingên xwe bimeşe.*

# Bawermendên kurd partiyekê ava dikin

▶Çepgirên kurd kirin endamên partiyên kemalîst, bawermendên kurd jî ketin nav partiyên oldar ên tirkan.

▶Em dixwazin bi baweriya xwe tevbigerin û partî anjî însyatifekê ava bikin. Di civîna pêş de wê biryara dawî ya avakirina rexistinekê bê dayîn



Wêne: Rûdaw

**Amed (Rûdaw) –** Serokê Koma Diyaloga Dîcle û Firatê, Mûhîtînê Batmanî, eşkera kir ku divê bawermendên kurd ji partiyên Îslamî yên tirk û ereban veqetin û li ser xeta bawermendên Kurdistanî însyatîfek an jî partiyekê ava bikin. Batmanî xwest ku êdî Kurd nebin dûvikê partiyên din.

Serokê Koma Diyaloga Dîcle û Firatê Mûhîtînê Batmanî, derbarê avakirina însyatîf û partiyeke nû ya bawermendên kurd de, bersiva pirsên rojnameya me Rûdawê da.

**Li Başûrê Kurdistanê partî û dezgehên bawermendên Kurdistanî hene. Ji bo çi li Bakurê Kurdistanê bawermendên kurd bi hev re, bi giyaneke Kurdistanî tevnagerin?**

Heta 1925ê tevgerên kurdan ên Kurdistanî ji sedî 90 hemû oldar bûn. Ronakbîrên kurd hemû bawermend bûn. Mewlana Xalid, Ehmedê Xanî, Meleyê Cizîrî hemû oldar in û Kurdistanî ne. Heta 1925ê jî li çar parçeyên Kurdistanê serkêşên tevgerên kurd oldar bûn. Li Bakur Şêx Seîd û hevalên xwe, Seîdê Kurdî û hevalên xwe, li Başûr Mele Mistefa Barzanî, Şêx Mehmûdê Berzencî û li Rojhilat jî Qazî Muhamed hebûn.

**Baş e. Çima ev tevgerên Kurdistanî û bawermend piştre ji xeta Kurdistanîbûnê derketin?**

Ji 1925ê û vir de, ji ber ku tevgera Şêx Seîd bi xwînê hate tepisandin, bi hezaran bawermendên kurdan hatin nefîkirin. Hinek ji wan çûn Anatoliya Navîn. Hinek ji wan berê xwe dan Rojhilat û Binxetê. Ji salên 70'an û vir de îcar tevgerên kurd rengê xwe guhertin ser çepgiriyê. Ji bo ku Kurdan bixapînin li ser xeta Kemalîzmê gelek partiyên tirk hatin avakirin û ji bo ku Kurdan ji rêya azadiyê dûr bixin, Kurd nebin yek, Kurd xistin nava xwe. Jixwe ji ber ku ev partî hemû li ser xeta Tirkiyeyîbûnê ava bibûn, Kurdên di nava xwe de jî helandin. Yanî çepgirên Kurd bi Kemalîzmê re, di nava heman xetê de cih girtin. Bawermendên kurd jî ketin nava partî û hêzên oldarên tirkan. Di bin tesîra hereketên alema ereban a Îslamî de, di bin tesîra ekola Îslama Îranê de man, di bin tevgera Afganistanê de man, hinek ji wan jî di bin tesîra cemaetên senteza tirkîslamê de man. Ji reh û damara kurdayetiyê qut bûn û careke din nekarîn bên ser xwe.

**Tirk, Ereb û Faris dibêjin "misilman bira ne" lê di bin de jî neteweya xwe derdixin pêş. Kurdên me jidil in, bi dilekî safî ji Xwedê û misilmaniyê bawer dikin, ji aliyê Tirk, Ereb û Farisan ve hatin bikaranîn.**

**Îro li Başûr partiyên bawermend hene, sekularîst hene, yên êzîdî û çepgir hene. Hemû jî Kurdistanî ne. Divê oldar, lîberal û çepgirên Bakurê Kurdistanê jî Başûr ji xwe re mînak bigrin**

**AK Partî îro piraniya dengê Kurdan distîne. Îro îmkana ku ev Kurdên ku dengê xwe didin AK Partiyê, dengê xwe bidin BDPê, nîn e. Çimkî BDP sekûlarîst e û bawerî nedaye bawermendên kurd.**

**Em ne alternatîfa BDP û PKKê ne**

**Tu jî heta salên 2000'î di nava oldarên tirk de bûyî. Çi guherî ku te dev ji wan berda û niha di wê baweriyê de yî ku divê Kurdên bawermend bi serê xwe tevbigerin?**

Her çiqas ji 1970'yan heta 2000'an jî em misilmanên kurd di hêz û hereketên ku dewa umetê dikirin de bûn, me cih sitand, lê bi kesayetî gelek kesên di wan hereketan de dîsa behsa Kurdistanê kirine. Mînak, di 1976ê de li Tetwana Bedlîsê mitîngeke bawermendên tirk û kurd çêbû. Di wir de me Batmaniyan bi kurdî pankarteke ku li ser "Azadiya miletan bi Îslamê dixwazin - Xortên Îslamê" dinivîsand, rakir. Di wê mitînga Tetwanê de Tirkên bawermend jî behsa Şêx Şehabedîn û Seyîd Evdilqadir kirin. Bi kesayetî em bawermendên kurd piranî ji berê de ji Şêx Seîd û hereketa Mele Mistefa Barzanî û Qadî Muhamed hez dikir. Em hê jî hez dikin. Piştî tecrûbeyeke dûdirêj me fêm kir ku em dibêjin umet, yekîtiya misilmanan, birayên misilman. Me lê nêrî ku em tenê vê dibêjin, Tirk, Ereb û Faris dibêjin "misilman bira ne" lê di bin de jî neteweya xwe derdixin pêş. Yanî Kurdên me jidil in, bi dilekî safî ji Xwedê û misilmaniyê bawer dikin, ji aliyê Tirk, Ereb û Farisan ve hatin bikaranîn. Em niha xwe rexne dikin.

**Tevgerên Îslamî yên tirk, ereb û faris li pirsgirêka kurd çawa dinêrin?**

Îro em hatine vê astê ku ew tiştên ku me diparast baş in lê xeyalî ne. Çimkî gelek xortên kurd li ser navê Îslamê berê xwe dan piştgiriya Çeçenistanê, Filistînê, Bosniya-Herzegovîna, Afganistanê û gelek bindestên din ên misilman. Lê me ti caran nedît ku hereketên bawermend ên ereb, tirk û faris Kurdên bindest ji xwe re nekirine xem û ji bo doza wan tênekoşiyane. Bi hezaran Kurdên me tên girtin, kuştin lê ne di xema wan de ye.

**Piraniya Kurdan misilman in. Ev piraniya bawermendên kurd hê jî dengê xwe didin partiyên muhafazakar ên dewletê û bi komên bawermendên tirk re kar dikin. Ev rewş divê çawa bê guhertin û giyaneke Kurdistanî di nava van bawermandan de bê avakirin?**

Di vir de ji me re mînaka mezin Başûrê Kurdistanê ye. Ev ji me re hêcanek e. Îro li Başûr partiyên bawermend hene, sekularîst hene, yên êzîdî hene û çepgir hene. Hemû jî Kurdistanî ne. Divê oldar, lîberal û çepgirên Bakurê Kurdistanê jî Başûr ji xwe re mînak bigrin û li ser doza kurd û Kurdayetiyê xebatan bimeşînin, dezgehan çêkin.

**Hûn bawermendên kurd hûn ê çawa bikaribin xwe ji hikûmeta AK Partiyê û ji grûbên bawermendên tirk xilas bikin?**

AK Partî îro piraniya dengê Kurdan distîne. Îro îmkana ku ev Kurdên ku dengê xwe didin AK Partiyê, dengê xwe bidin BDPê, nîn e. Çimkî BDP sekûlarîst e û bawerî nedaye bawermendên kurd. Pêwîst e ku em Kurdên oldar hêzeke alternatîf çêbikin û van Kurdên ku dengê xwe didin AK Partiyê û partiyên oldarên din, bînin ba xwe. Jixwe îro piraniya Kurdan di wan partiyan de ne. Ger em bikaribin van Kurdan ji wan partiyan veqetînin, divê yan hereketeke mezin a bawermendên kurd yan jî partiyeke kurd a bawermend bê çêkirin. Îro Kurdên me yên oldar piranî bi grûbên tirkan û yên ereban re kar dikin. Navendên wan Stenbol, Enqere, Qahîre ne. Divê bi şiklekî em ji nû de van oldarên Kurdistanê li hev vegerînin, bicivînin, weke mînaka Başûrê Kurdistanê. Weke ku em bûne dewletek, ji nû de saziyên xwe yên sivîl çêbikin, partiyên xwe çêbikin. Bi vî şeklî wê Kurdên oldar ber bi vê hereketê ve bên û xeta Kurdistanî biparêzin.

**Di bin navê "Bawermendên Kurd" de, vê mehê li Amedê civînek pêk hat. Armanca we çi bû?**

Divê em misilmanên Kurdistanê serbixwe bixebitin. Ez niha ne berdevkê vê civînê me. Ez jî ji wan ferdek im. Jixwe niha berdevk jî tune ne. Lê weke kes, ez dikarim wiha bêjim; em ne alternatîfa BDP û PKKê ne. Em dixwazin bi baweriya xwe tevbigerin. Em dixwazin însyatîfek an jî partiyekê ava bikin. Ev civîna me wê careke din pêk bê. Di civîna berê de komîsyon hatin avakirin. Piştî meha Remezanê em ê di civîna ku çêbikin de bi berfirehî li ser vê mijarê biaxivin, bidin û bistînin. Di vir de wê biryara dawî bê dayîn û li gorî wê rêxistinek bê avakirin.

*Hevpeyvîn: Bawer Çem*

# Piştî 20 salan dosyeya Vedat Aydin dîsa vebû

▶Şukran Aydin: Dîtina kujeran ne girîng e, divê fermanbar bên girtin

▶Sakik: Kuştina Vedat Aydin bû destpêka bi hezarên kuştinên kujerên ne diyar

**Medya Deniz**

Serokê HEPê yê bajarê Amedê Vedat Aydin roja 5ê tîrmeha 1991ê ji aliyê koma kesên çekdar û îtîrafkarên ku di bin fermandariya Cem Ersever kar dikirin ji mala xwe ya li taxa Yenişehirê hat binçav kirin. Laşê wî roja 7ê tîrmehê li nêzîkî navçeya Elezîzê, Medenê tevî birînên îşkenceyê û gelek guleyan hat dîtin. Ligel ku di navberê re 20 sal derbas bûn hê jî kujerên wî nehatin dîtin. Çend roj beriya ku doza Aydin ji bo derbasbûna demê bê rakirin, Dozgerê Komarê yê Amedê wêneyên çend kesên biguman nîşanê hevjîna Vedat Aydin, Şukran Aydinê da. Doz ji ber vê yekê heta 5ê tîrmeha 2021ê bo deh salan hat dirêjkirin. Şukran Aydin, parêzerê doza Vedat Aydin û Parlemenê BDPê yê Mûşê Sirri Sakik derbarê dozê de ji Rûdawê re axivîn.

### Şukran Aydin: Divê ne kujer, fermanbar bên dadgeh kirin

Hevjîna Vedat Aydin, Şukran Aydin da zanîn ku ev 20 sal in ji bo ronîkirina dozê têdikoşin û got "lê dîwarê tarîtiyê gelek stûr e û pir zêde tê parastin." Aydin balkişand ser helwesta hikûmeta AKPê û got ew hinekan derdixin holê û xwe jî pak dikin. Aydin wiha axivî: "Lê em baş dizanin ku hemû hikûmet berdewamiya hev in û weke hev in. AKP vê demê bi bûyerên li vê herêmê rû dane re hinek mijûl bû. Ligel ku binav nakin jî, Komîsyona Lêkolîna Wendayan bi şêweyekî veşartî dixebite. Ev karan jî ne ji bo me, lê ji bo berdewamiya desthilata xwe dike. Ji bo me tişta girîng ne dadgehkirina kujeran e, divê xwediyê fermanan bên darizandin."

### Arif Altunkalem: Pirs bo Aygan hatin şandin

Doza Vedat Aydin di serê vê mehê de diket demderbasbûnê, lê di destpêka meha hezîranê de hevjîna Vedat Aydin, Şukran Aydin ji bo naskirina kujeran ji aliyê dozger ve hat vexwendin. Aydin di nava wêneyan de Mahmut Yildirim (Yeşîl) û îtîrafkar Murat Emir teşhîs kir. Piştre sê kesên din hatin binçav kirin. Şukran Aydin da zanîn ku yek ji van kesan di dema birina Vedat Aydin de li devê deriyê wan pê re axiviye û kesê din jî wê demê li jêr tevî çek û bêtêla xwe li benda wan sekinî bû.



Wêne: DIHA

Îsal dîsa di salvegera kuştina Vedat Aydin de li Amedê bi hezaran kes meşiyan




Derbarê doza Vedat Aydin ku piştî 20 salan dîsa daketiye dadgehê, parêzerê malbata Aydin Arîf Altunkalem daxuyand ku kuştina Vedat Aydin li Kurdistanê bûye wek destpêka bi hezaran kuştinên kujerên ne diyar. Altunkalem daxuyand ku hikûmet, dad û dewlet dixwaze bi ronîkirina vê dozê bawerîya gel bistînin. Altunkalem wiha axivî: "Ev doz dikare bibe mînak ku hikûmet baweriya hemû kesan bistîne. Dixwazin vê peyamê bidin: Kî dibe bila bibe wê kujer bên girtin û bên dadgeh kirin. Lê piştî ewqas demeke dirêj, wê çi encam derkeve, ne diyar e."

Altunkalem rgihand ku vegotinên Abdulkadir Aygan gele girîng in û dozger ji Wezareta Dadê xwestiye ku ew jî bê dadgehkirin û qet nebe jê bê pirsîn. Altunkalem got, "Di dawiyê de dozger û wezaretê lihevkirin ku bi nivîskî pirs ji Aygan re bên şandin û bersivên wî tevlî dozê bikin."

### Parlementerê BDPê yê Mûşê Sirri Sakik: Vedat birîna me ya xwîndar e

Sakik daxuyand ku bûyera Vedat Aydın ji bo Kurdan wek bîrineke xwîndar e û hê jî didome. Sakik kuştina Vedat Aydin wek destpêka kuştinên bi hezaran ên kujerên ne diyar binav kir û wiha axivî: "Ji van kuştinan tenê 17.500 heb tên zanîn, yên ku em nizanin jî belkî ewqas zêde ne. Dibêjin kujerên ne diyar, lê ew diyar in, hemû jî diyar bûn. Li gel ku hemû akter, figuran û leystikvan diyar bûn, hemû jî hatin parastin. Ergenekonê ji van bûyeran dûr xistin, lê Ergenekon serkêş û akterê erî mezin bû."

Sirri Sakik da zanîn ku eger Tirkiye bixwaze bi paşeroja xwe re rû bî rû bimîne, divê aliyê din ê Firadê baş bibîne û bizanibe ku di her bostek erdê wê derê de gorên komî hene û got, "Divê Tirkiye li warê me bi lêborîna van bûxeran dest bi rûbîrû mabûna pêşeroja xwe bike."

Sakik derbarê lêborîn û ronîkirina pêşeroja Tirkiyê de wiha axivî: "Divê Tirkiye ji dema avakirina komarê û kuştina Mustafa Suphî dest pê bike û bi kuştina Vedat Aydin a li Kurdistanê berdewam bike. Heta kujerê van bûyeran ronî neke û nede dadgehan nikare xwe pak bike. Dema ku vî karî kir dikare biratiya gelan pêkbîne, ku neke aştî jî zehmet e. Divê birînen me yên xwîndar derman bike. Vedat û yên din birîna me ya xwîndar in. Em hem dikarin li kujerên xwe biborin û hem jî dikarin heyfa xwe bistînin."

# Pirsa Kerkûkê û tecrûbekirina xebata Neguhdariya Sivîl


Siyaweş Goderzî


Wêne: Rûdaw

Di dîroka bizava kurd li Başûrê Kurdistanê de, Kerkûk herdem girêka kor bû. Di heyama mela Mistefa Barzanî de û di peymanên navbera bizava kurd û hikûmeta Îraqê de, kêşeya herî mezin Kerkûk bû. Di salên 80an de, gotûbêjên navbera YNK û hikûmeta Îraqê de dîsa girêka kor a rêkkeftinê, çarenivîsa Kerkûkê bû. Ji ber girîngiya rewşa aborî û siyasî ya Kerkûkê ne hikûmeta Îraqê ku di heman demê de hergav hewl daye demografiya Kerkûkê têk bide, li kurdbûna vî bajarî mikur hatiye û ne bizava kurd jî ne di xurtî yan lawaziya xwe de dest ji Kerkûkê berdaye.

Tevî ku di serhildana 1991ê de, Kerkûk ji aliyê Kurdan hat azadkirin, lê piştî demeke kêm ji destê Kurdan hat derxistin û piştre di dirustkirina hêla nefirrîna 36 pile de ji aliyê hêzên hevpeymanan, Kerkûk neket bin desthilata kurdan. Hêzên hevbend di rastiyê de nedixwestin çarenivîsa Kerkûkê weke navçeyeke stratejîk a navdewletî di neroniyê de bê hiştin. Dûre şerê birakujiyê yê Kurdan heya nêzîka rûxandina Saddam Huseyîn, bi tevahî Kerkûk jibîra Kurdan bir. Piştî têkçûna dewleta Îraqê di sala 2003ê de, careke din Kerkûk ket destê Kurdan, lê Amerîka nehişt Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din bikevin bin desthilatdariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê.

Di yasaya demkî ya Îraqê de, di madeya 58. de behsa çareseriya kêşeya Kerkûkê hat kirin, lê dewleta demkî ya Îraqê ti gav bo cîbicîkirina vê madê neavêt. Di Cotmeha 2005ê de di destûra herdemî yê nû ya Îraqê de di madeya 140ê de careke din behsa çareseriya Kerkûkê ket rojevê. Li gor madeya 140ê divabû heya 31.12.2007ê kêşeya çarenivîsî ya Kerkûkê bihata yekalî kirin. Lê sala 2007ê bidawî hat û madeya 140ê nehat bicihkirin, 6 mehên din jî bo nîvê sala 2008ê, madeya 140ê hat dirêjkirin û vê carê UN hat navê û Steven Demestura weke berpirsê doza Kerkûkê hat destnîşan kirin. Jixwe wê dema ku UN xwe tevî pirsa Kerkûkê bû û bo çavdêrên hûrbîn ne pêşbîniyeke zehmet bû ku ev tê wateya çaresernekirin û daleqandî mana pirsa Kerkûkê heya roja mehşerê be. Ev di yekemîn beşê rapora Steven Demestura de derket. Di raporê de ne ku tenê çareseriyek bo pirsa Kerkûkê nehat pêşvebirin, lê hat pêşniyarkirin ku herdu qezayên Hemedaniye û Mendelî, weke du herêmên girîng ên navçeyên veqetandî bibin ser bi hikûmeta navendî ya Îraqê. Heya niha her çiqasî pirsa Kerkûk û navçeyên veqetandî car caran bûne rojev, lê ev pirsgirêk herdem çaresernekirî û daleqandî maye.

Di tecrûbeya doza Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din de pêwîst e amaje bi çend xalan bê kirin, di serî de du faktorên bingehînî:

**Yek: Faktorê leşkerî:**

Kurdan bi hêza leşkerî nikaribûn bi zor û kotekiyê Kerkûkê vegerînin ser xaka Kurdistanê. Ji şoreşa Îlonê û dûre heya sala 2003ê, Kurdan di şerê rizgarîxwaziyê de bo azadkirina Kerkûkê di aliyê leşkerî de xemsarî nekirine, lê her car rastî şikestinê hatine. Ji îro şûnde jî çareseriya leşkerî ji bilî alozkirina zêdetir a pirsgirêkê û xwînrijandin û kûrbûna birînên kevin ên etnîkî û mezhebî tiştekî din berhem nayîne. Niha ku Kurd beşek ji Îraqê ne, şerê rizgariyê nemaye, lê birînên kevin li Kerkûkê her li cihê xwe ne: tenê di hundirê mehekê de ji roja 16ê Hezîranê heya 16ê Tebaxa 2008ê, bi giştî 150 Kurd li Kerkûkê hatin kuştin û 200 kes jî birîndar bûn. Goristaneke nû li taxa Reşîdawa ya Kerkûkê ku di van salên dawî de hatiye ava kirin, ji sedî 80ê goran, gorên wan kurdan e ku bi kiryarên terorîstî jiyana xwe ji dest dane.

**Du: Faktorê navdewletî**

Ev rastiyeke ku piştî damezrandina dewleta Îraqê weke pêwîstiyeke siyaseta navdewletî, hêzên mezin, Kerkûk weke cihekî hevrikiyê di navbera dewletên Îraq-Tirkiyê û hevrikiya neteweî di navbera Kurd-Ereb-Turkmenan de hiştin. Pir caran li derveyî îradeya xelkê Kerkûkê, ev wîlayet weke kartekê li gor berjewendiya dewletên mezin û deverê hatiye bikaranîn. Ji bilî dewletên dijberên gelê kurd weke Tirkiye, Îran û Sûriyê dewletên mezin jî xwe tevî pirsa Kerkûkê kirine. Mînaka herî diyar pêkutiya Amerîka li ser venegerandina Kerkûkê li ser Herêma Kurdistanê ye, bi mebesta parastina berjewendiyên xwe ligel Tirkiyeyê ya endama NATO.

Ji bilî van faktoran, ji 2003ê û şûnde Kurd bi xwe bûn şirîkên dewleta Îraqê, hejmareke tecrûbeyan hene ku nîşan dan, çareseriya Kerkûkê çiqasî cihê gengeşê ye:

**Yekem: Rapirsî:**

Bo cara yekê di sala 1970ê de di gotûbêjên peymana Adarê di navbera Kurdan û dewleta Îraqê de, bo cara dûyemîn di sala 2003ê de û di dema dariştina destûra Îraqê de, ji aliyê Kurdan ew hat pesendkirin ku çarenivîsa Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din bi riya rapirsiyê bê çareserkirin. Ev tecrûbe nîşan dide ku rapirsî di bingeh de şaş bû, diyar e her çiqasî garantî di yasaya bingehînî ya Îraqê de jî di madeya 140ê de hebû, dîsa nehat bicihkirin. Ji bilî vê jî divê ev faktor jî liberçav bê girtin ku di bingeh de şaş e bo Kurdan û çarenivîsa wan û xaka wan jî herêmeke stratejîk weke Kerkûkê têxe ber rapirsiyê û pêşber eger û meger û paşerojeke wenda û nediyar.

**Duyem: Rêkkeftin:**

Piştî rûxandina Saddam, Kurd di pêkanîna civata desthilatê û dûre jî dewleta nû ya Îraqê de, roleke girîng lîstin. Ev jî hemû berî wan rêkkeftinan bûn ku di navbera Kurd û pêkhateyên din ên Îraqê de hatin îmzekirin. Ji bilî postên bi nav girîng bo Kurdan, peymanan pirsa Kerkûkê çareser nekirin. Piştî hilbijartinên giştî li Îraqê û hilbijartina Dr. Ibrahîm Ceferî weke serokwezîr, yek ji şertên Kurdan bo tevîbûna di wezareta Ceferî de bicihanîna madeya 58ê bû. Lê Ceferî hê zû madeya 58ê avêt pişt guhê xwe. Dûre gava destûra Îraqê jî hat nivîsîn madeya 58 bi madeya 140 hat guherandin û Nurî Malikî ket dewsa Ceferî û di heman demê de jî Celal Talabanî di dema herdu hikûmetan de serokkomarê Îraqê bû, çarenivîsa madeya 140ê weke madeya 58ê lê hat.

Bi ser de jî qala wê yekê tê kirin ku heya vêga ti protokoleke nivîskî ya van peymanên ku bi taybetî bi îmzeya Amerîka ku dagîrkera Îraqê ye li cem Kurdan nîne û kes nizane derbarê dahatûya Kerkûk û navçeyên veqetandî ji bilî madeya 140ê, çi heye û çi hatiye îmzekirin? Balkêş e ewqasî behsa peyman û tifaqê li Îraqê tê kirin, lê di ti bendeke destûra Îraqê de amaje bi tifaqê nayê dan.

### Tecrûbekirina xebata Neguhdariya Sivîl

Ji ber ku pirsa Kerkûkê ne tenê pirseke Başûrê Kurdistanê ye lê pirseke neteweî ya hemû Kurdane û yekalîkirina wê bandorê li ser çarenivîsa hemû Kurdan dike, pêwîst e stratejiyeke nû di vê pirsê de liberçav bê girtin, ku ew jî vegera li xelkê ye. Divê em vegerin têgeheke nû ku têgeheke civaknasî ye, yanî guherîn û dîtina mêkanîzmên çareseriyê ji jêrê û di nav civakê bi xwe de. Bi vî rengî çareseriya pirsgirêkê û awayên çareseriyê di nava xelkê Kerkûkê û navçeyên veqetandî yên dî tên pêşdebirin ne ku ji serî ve ji aliyê partiyeke siyasî yan Hikûmeta Herêma Kurdistanê û kes û aliyên desthilatdar. Lê ger her partiyeke siyasî yan her alî û grubekê xwest piştgiriya çareseriya sivîl ya xelkê bike, baştir dibe çimkî yek ji armancên xebata sivîl, kişandina bala xelkê û piştgiriya wan e û di encamê de diyalog û çareserî ye.

Gelo bi rastî Kerkûk û navçeyên veqetandî yên dî dixwazin vegerin ser Herêma Kurdistanê, daku em vegerin berbi dengê xelkê? Bersiva vê pirsê, erê ye. Tevî ku em jî rêveberiya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ne razî ne û em dixwazin sîstema desthilatê demokratîktir be, lê dîsa jî aborî û ewlekariya Herêma Kurdistanê li gor navçeyên di bin desthilata hikûmeta Îraqê de, baştir e. Li vir em digihin pirsa duyem: çawa û bi çi awayekî ye?

Weke ku berê hat qalkirin, ezmûna direj, şerê demdirêj ê Kurdan, lihevkirin ligel hikûmeta Îraqê û dûre hevbeşiya Kurdan di pêkhateya hikûmeta Îraqê de nikaribûn azadiya Kerkûkê bidestve bînin. Berî her tiştî awayê nû ku li vir mebesta me ye, awayekî nû û hevdem e, yanî xebata sivîl û dûr ji tundûtûjiyê ye. Xebata neguhdariya sivîl dibe ku tecrûbekirineke baş be di vê navê de. Xebata neguhdariya sivîl bi taybetî wê demê zêdetir tê bikaranîn ku weke di doza Kerkûk û navçeyên din de heye, şert û mercên wiha xirab û pêdar û teqinî hebin ku xebata xelkê rewa bikin.

Xebata neguhdariya sivîl di wê demê de wateyê dide ku kesek an gelek kes dijî yasa û rêbazên piraniyê derdikevin an bi tevahî jê vediqetin.

Em baş zanin ku ew yasa û rêbazên ku xelkê Kerkûk û navçeyên veqetandî yên din xistine rewşeke nexweş ku bê xwesteka xwe di pêkhateyeke erdnîgarî de hatine asêkirin, li derveyî xwestek û daxwaza wan bûn. Gelê kurd berê ji ber dewleta Îraq û Saddam Huseyîn û dûre jî ji 2003 bi şûnde ji ber rêkkeftinekê ku bêtir berjewendiyên welatên din tê de liberçav hatine girtin, ew yasa û rêbaz û şert û merc li ser wan hatine sepandin. Yanî di hikûmetên zordest de yasa bi rêya demokrasiyê nehatine danîn û nêrîna piraniya xelkê di wan de tune. Eger em qala Kerkûkê piştî 2003ê bikin, eger ev yasa ji aliyê hikûmeteke demokratîk jî hatibin danîn, dîsa mafê kêmjimara Kurd e weke kêmjimarekê di Îraqê de û ji alîkî din jî weke piraniyê li Kerkûk û deverên veqetandî, van yasayan neparêzin û binpê bikin. Yasa li derveyî îradeyeke kurdî û berjewendiyên gelê Kurd li ser Kurdan hatine sepandin, lewra mafên exlaqî yên bingehînî yên mirovê Kurd di van yasayan de hatine binpêkirin.

Hemû Kurdên Kerkûk û navçeyên veqetandî yasayên Îraqê ku wan bi kotekî bi Îraqê ve girêdidin, naparêzin. Ger her Kurdek di awayê xebata neguhdariya sivîl a dijî hikûmeta Îraqê bi erk û fermanên hikûmetê li navçeyên veqetandî rabin, ti yasa û destûrek ku piştgiriya xelkê li pişt nebe nikare heya çend deqîqeyan jî xwe bigire. Weke mînak çêdibe behsa boykotkirina hilbijartinên parlamentoya Îraqê û civata parêzgehan bê kirin û hêdî hêdî xelk li derveyî çarçoveya dewleta Îraqê rêveberiyên xwe yên herêmî ava bikin.

Di van rêveberiyên serbixwe de ku di hilbijartineke demokratîk de tên hilbijartin hemû sîstema rêveberiyê di aliyê perwerde, xizmetguzarî û dabînkirina ewlekariyê ji Îraqê vediqete û serbixwe dibe. Ev serxwebûn û dijberiya sivîl li dijî Îraqê wek şêwaza xebata neguhdariya sivîl di qonaxa guhastin û serkeftina Hikûmeta Herêma Kurdistanê de li derveyî çarçoveya dewleta Îraqê li herêmên cuda yên navçeyên veqetandî çêdibe bi damezirandina rêveberiyên navxweyî yan serbixwe destpê bike û dûre di hevgirtina azad û demokratîk de bo vegera ser hikûmeta Kurdistanê bidawî bê, yan di çarçoveya Hikûmeta Herêma Kurdistanê û xaka Kurdistanê de serxwebûna xwe berdewam bikin.

### Bi nexweşiyek giran ketiye û li ber mirine ye

# "Dixwazim carek din birayê xwe bibînim"

**Azad Dîcle** Koln

Şahîn Mohammad Saleh (37) niha li nexweşxaneyeke bajarê Munchenê ye û rojên xwe yên dawî dijî. Şahîn Mohammad Saleh ku bi giranî nexweş e û tûmorek di serê wî de peyda bûye, bi hêvî ye ku daxwaza wî ya dawî bi cih were: Ew dixwaze beriya mirina xwe careke din birayê xwe yê ku li Kurdistanê dijî, bibîne. Lê birayê wî naxwaze wî bibîne.

Ji ber ku ti kesûkarên Şahîn Mohammad Saleh li Munchenê tune, Komela Kurdan a li Munchenê (KKV) bi alîkarîkirina Şahîn Mohammad Saleh re mijûl e. Ji bo ku xwesteka Şahîn Mohammad Saleh a dawî pêk were, ew jî dîtina birayê wî yê li Başûrê Kurdistanê ye, komela kurdan ketiya nav hewldanan û nameyek ji balyozxaneya Almanya ya li Hewlêrê re şand û doza alîkariyê ji balyozxaneyê kir.

Komela kurdan di nameya xwe de dibeje ku Şahîn Mohammad Saleh niha li nexweşxaneya Großhadern a li bajarê Munchenê tê tedawîkirin û pizîşkê ku li Şahîn Mohammad Saleh dinêre ji wan re gotiye ku di serê Şahîn Mohammad Saleh de tûmorekî ku tedawîkirina wî bêçare ye peyda bûye û ti şansê wî yê başbûna ji vê nexweşiyê

**Saleh gelekî bêtaqet bûye û tenê dikare carnan bi zorê biaxive. Ew êdî nikare rêwîtiyê bike û nikare ji bo mirinê biçe welatê xwe jî.**

nemaye û ji komelê daxwaz kiriye ku amadekariyên dawî ji bo Şahîn Mohammad Saleh dest pê bikin. Pizîşkên Şahîn Mohammad Saleh raportek jî derbarê rewşa wî ya bêçare amade kirine û piştgiriya daxwaza Şahîn Mohammad Saleh a dîtina birayê wî dikin.

Komela kurdan di nameya ji bo balyozê alman de balê dikşîne ser wê yekê ku ti kesûkarên Şahîn Mohammad Saleh li Munchenê tune û daxwaza wî ya dawî ew e ku birayê xwe yê ku li Kurdistanê dijî, dîsa bibîne û wiha dom dike: "Birêz Saleh gelekî bêtaqet bûye û tenê dikare carnan bi zorê biaxive. Di rewşa wî de êdî ew nikare rêwîtiyê bike, ji ber wê yekê ew nikare ji bo mirinê biçe welatê xwe jî."

Komel ji bo birayê Şahîn Mohammad Saleh, Salah Şahen, daxwaza dana vîzeyê di demek herî zû de bo Almanya ji balyozxaneya Almanyayê li Hewlêrê dike. Ji bo mesrefên Salah Şahen li Almanyayê jî komelê 2000 € alîkarî kom kirine. Weke ku serokê Komela Kurdan li Munchenê, Faxer Sindî, ji Rûdawê re diyar kir, balyozxaneya Almanya li Hewlêrê di heman rojê de bersiva wan bi erênî daye û amadebûna xwe ji bo dana vîzeyê ji bo birayê Şahîn Mohammad Saleh nîşan daye. Lê êdî Salah Şahen naxwaze birayê xwe yê nexweş li Almanya bibîne, weke ku Farix Sindî dibeje: "Berê em bi Salah Şahen re axivîn, wî jî xwest ku were Almanya û birayê xwe yê nexweş bibîne. Lê piştî ku balyozxaneya alman diyar kir ku ew ê vîzeyê bide wî, êdî Salah Şahen helwesta xwe guhertiye û dibêje ku êdî ew naxwaze were û birayê xwe di wê rewşa xirab de bibîne."



Weke ku Farix Sindî dibeje, rewşa Şahîn Mohammad Saleh roj bi roj û saet bi saet berbi xirabbûnê ve diçe û ew êdî nema dikare biaxive jî.

Şahîn Mohammad Saleh ji bajarokê Sêmêl ê ser bi Duhokê ye û beriya 8 salan hatiye Almanya. Şahîn Mohammad Saleh zewicî ye û malbat û du zarokên wî li Başûrê Kurdistanê dijîn. Beriya 4 hefteyan pizîşkan ji Şahîn Mohammad Saleh re diyar kirin ku ew bi giranî nexweş e û tûmorek di sere wî de peyda bûye.



Miihemed Qadir Weysî li Hofddorpê hê ev xanî ku nû kirîbû û tê de dixebitî

### Nû xanî kirîbûn û tê de kar dikirin

# Malbateke kurd di bûyereke agirgirtinê de bû xwelî

**Hollanda (Rûdaw) –** Li bajarê Hofddorp a Hollanda, mêrekî kurd û jina wî ya rûs û sê zarokên wan di bûyerekê de şewitîn û jiyana xwe ji dest dan. Her çiqasî aliyek medyaya hollndî bi awayekî nerasterast bavê wê malê ku bi xwe jî mir, weke sedemê agirgirtinê didin naskirin, lê xizmên wî vê yekê red dikin.

Cîranên hollandî yên mala şewitî bi xemgînî dibêjin ku çawa şeva 4ê tîrmehê dûmaneke zêde dîtin ji pencereya mala Şêrwan Mihemed Qadir Weysî (43) derdikeve. Herwiha dengê çend teqînan jî hatiye guhê wan.

Roja 5ê tîrmehê Berdevkê Wezareta Navxwe ya Hollanda û serokê şarevaniya Hofddorp di civîneke çapemeniyê de ragehandin ku saet 2ê şevê dengê çend teqînan di nava malê de hatiye bihîstin. Pey re agirekî mezin çêbûye û di encamê de ji bilî Şêrwan, jina wî ya rûsî Nataliya Yurî Yievna (35) û zarokên wan Lane (11), Lîza (8) û Daniyar (6) jiyana xwe ji dest dan.

Sandra Khorxis ku jineke cîrana mala Şêrwan e, qala wê yekê dike ku birayekî wê ligel tîma agirkujînê de bû û bi çavê xwe term dîtine: "Birayê min ji min re got tiştê li hundir didît, ne tiştek e mirov bixwaze bi çavê xwe bibîne."

Piştî qezayê, cîranên mala Şêrwan daxuyaniyên cuda didin medyayê. Yek ji van cîranan li navê Jack Bomban dibêje: "Ew malbat dema salekê bû hatibû taxa me û xwe îzole dikirin. Bi baweriya min kesatiyeke tarî ya Şêrwan hebû. Silava me li kolanê jî venedigerand. Kêşeyên wê malê hebûn, me carinan dengê hawar ji vê malê dibihîst." Lê Sûsane Blokzayî ku cîran û dosta mala şewitî ye van gotinan bi tevahî red dike û dibêje: "Zilamê malê di mala xwe de herdem kar dikir." Sûsane pir dilgiran e bi vê bûyerê û dibêje: "Min hêvî dikir vê havînê kurê min ligel kurê wan bibe heval û bi hevre têr bilîzin."

Di civîna çapemeniyê ya Berdevkê Wezareta Navxwe û serokê şarevaniya Hofddorp de, berdevkê wezareta navxwe eşkere dike ku li cem polîs gumana wê yekê heye ku bûyer bi qest hatibe kirin, lê derbarê kitekitên vê gumanê tiştekî eşkere nakin. Ev daxuyaniya Berdevkê Wezareta Navxwe piştî çend saetan ji aliyê rojnameyên mezin ên hollndî weke Telegraph û Hot Paroll û Spîtis hat belavkirin ku dibe bavê zarokan li pişt bûyerê be, lê belê Rizgar Elî Qadir bi navê malbata Şêrwan ji Rûdawê re ragehand: "Derewên ku rojnameyên hollandî weşandibûn ji rastiyê dûr in. Mala Şêrwan maleke kêfxweş bû, em bawer dikin ku di dema karkirinê de boriya xazê teqiyabe. Rehmetî kesekî destrengîn bû, hemû karên malê zanibûn. Ew di dema bûyerê de bi xaniyê xwe ve mijûl bû."

**Lêkolîn didomin**

Roja 5ê tîrmeha 2011ê di civîneke çapemeniyê yê karbidestên hollandî de li bajarê Hofddorp hat tekezkirin ku lêkolînên li ser dosyayê berdewam in, lewma jî nexwestin ti hurdekariyan ji medya re bêjin. Serokê Şarevaniya Hofddorp Tiyo Vaterîngs konferansa xwe bi peyamekê bo xizmên mala kurd qedand: "Em hevderd in ligel kesûkarên malbatê û cîranên wan ên vecinqiyayî û hevalên xwendingehê yên zarokên qurbanî."

## Penaberê kurd li benda alîkariya rayedaren e



*Berlîn (Rûdaw) - Penaberê kurd ê bi navê Mehmet Batmaca (28) ku ji Bakurê Kurdistanê, ji bajarê Çewlikê ye, li dijî biryara dersînorkirinê li benda pêwendiya rayedaran e. Batmaca dide xuyakirin ku ew li Tirkiyeyê rastî îşkenceyê hatiye û eger ew paşve bê şandin wê jiyana wî bikeve xetereyê. Mehmet Batmaca ku ev 1.5 sal e li Almanyayê dijî, zewicandî û xwediyê du zarokan e. Serlêdana wî ya penaberiyê ji aliyê rayedarên alman ve hatibû redkirin û jê xwestibûn ku di nav 15 rojan de ji Almanyayê derkeve. Di 27 ê gulana borî de ev dem tijî bûbû, lê ji ber eleqeye çapemeniya kurd carek din mafê dadgehê jê re vebûbû. Batmaca niha jî li benda arîkariya rayedarên alman e, da ku mexdûriyeta wî û malbata wî li ber çav bigirin. Batmaca wiha behsa serboriya xwe kir: "Jina min û herdu zarokên min li vir dijîn. Zarokekî min du salî ye û ya din jî hêj 3 mehî ye. Eger ez bêm şandin, ew ê jî li vir bikevine zehmetiyê û wê li Tirkiyeyê jiyana min jî bikeve nav xeterê." Batmaca diyar kir ku ew welatparêzekî kurd e, herwiha jî endamê komelek Kurdan li Berlînê ye û ev yek tenê jî sedemeke ku li Tirkiyeyê rastî dijwariyan were.*

**Li Hollanda ciwanên kurd ên xwendekar ji bo mafên xwe yên civakî berê xwe didin endamtiya partiyên hollandî.**



Wêne: Rûdaw

# Ciwanên kurd tevlî partiyên ewropî dibin

**Hollanda (Rûdaw) –** Nêrînên ciwanên Kurd ên cuda li derve li ser endamtî û karkirina ciwanan di partiyên siyasî yên ewropî de, hene. Hinek ji wan weke erkê ser milê xwe dibînin û hinekên din jî vî karî dikin da ku jê "fêrî jiyanê" bibin.

Roja 1ê tîrmehê li bajarê Utrecht a Hollanda Partiya Karkerên Hollanda baregeheke nû vekir. Di merasîma vekirinê de, di nav endamên çalak ên vê partiyê de Ciwan Mistefa, ku ciwanekî ji Rojavayê Kurdistanê ye, diyar bû. Ciwan bi awayekî eşkere dibêje: "Eger merasîma partiyeke kurdî hebûna qet nediçûmê, lê bo partiyên hollandî amade me dev ji kar berdim." Ew mebesta xwe rontir dike û dibêje: "Merasimên partiyên me tiştên dubare û propoganda ne. Mirov ji wan dilgiran dibe, ji ber ev merasîm nabin sedemê ku mirov bêtir pêkutiyê li ser Kurdayetiya xwe bike." Piştî beşdarîkirina di vê merasimê de, Ciwan got: "Di civînên partiyên hollandî de mirov fêrî tiştên nû dibe. Ji siyasetê bigire heya awayê jiyanê. Ez ji partiya xwe fêrî jiyanê bûm."

Xelat Azad, ku ji Başûrê Kurdistanê ye û endamê Partiya Sosyalista Hollanda ye, ne ligel raya Ciwan e. Bi baweriya Xelat: "Rast e partiyên me li gor partiyên vir di asteke nizimtir de ne, lê belê hertişt li cihê xwe baş e." Xelat sedemê ku bûye endamê partiyeke siyasî ya Ewropî wiha vedibêje: "Ez vê yekê weke erkeke ser milê xwe dibînim. Partiya min, tiştê ji destê wê hatiye bo gelê Kurd û doza me kiriye, lewra eger ne endamê wê bim û piştgiriya wê nekim nîşana wê yekê ye ne dilsozê Kurdistanê me."

### Bêtir çep in

Di çend salên çûyî de gelek Kurd li ser lîsteya partiyên çep ên hollandî tevî hilbijartinan bûn û bûn endamên civata parlamento, hikûmetên herêmî û civatên şaredariyên Hollanda. Mamosteyê zanînên siyasî li koleja rojnamevaniyê ya zanîngeha Amsterdam Hendrick Dickerhof, sedemê vê yekê vedigerîne piştîvanîkirina van partiyên çep li kesên hollandî yên bi esil biyanî: "Herdem xalên wiha di bernameyên van partiyan de hene ku muxataba mêjiyê kesên bi esil ne hollandî dike,weke hêsankarî di pirsên xweguncandin û mafê mabûn û mafên jinan. Lê partiyên Rastbîr di bernameyên xwe de qala sînordarkirina astê koçberiyê û zêdekirina zextan li ser kesên zimannezan dikin da ku wan ji sîstema wergirtina sosyalê dûr bikin û kar bikin. Yanî siyasetên wan bêtir li dijî berjewendiyên kesên bi esil biyanî ne."

Ciwan Mistefa ligel raya Dickerhof e, lê dibêje: "Rewşa Kurdan di nav biyaniyan de jî cuda ye." Piştre mînakekê tîne û dibêje: "Rast e partiyên çep dostê biyaniyan in, lê di gelek helwêstên xwe de ne Kurddost in. Mînak partiya ku endamê wê me gava tevî hikûmetê bû, ti pêngavek neavêt bo sînordarkirina firotina çekên hollandî bo hikûmeta Tirkiyeyê." Ciwan dibêje endamên kurd ên vê partiyê zextên zêde xistin ser serkirdayetiya xwe da ku gavekê di vî alî de bavêjin: "Lê serkirdayetiyê tenê guhdarî kir û bi ya me nekir."

### Xebat bo mafên jinan

Şermîn Can Aslan, keçeke ji Bakurê Kurdistanê ye û endama Partiya Sosyalista Hollanda ye. Wê çend geran xwe berbijar kir daku li herêma başûrê Hollanda bibe endama civata wîlayetê, lê dengên pêdivî ne anîn. Şermîn sedemên endamtiya xwe ya di partiyeke Hollandî de wiha vedibêje: "Ev ji Kurdan re pêwîst e.

Ger em vî karî nekin wê kî bike? Beşdariya me û parastina berjewendiyên me li navendên Ewropî erk e." Şermîn diyar dike ku pir girîng e partiya wê piştgiriyeke bêtir bidestve bîne da ku "Xebat bo bidestveanîna mafê zêdetir ji jinên kurd re bikin. Jinên Kurd li Ewropayê jî pir tên çewisandin û mêrên kurd wan dêşînin, ger ev jin di partiyên siyasî yên vir de çavbel bibin, fêr dibin çawa xwe û mafên xwe diparêzin. Lewma ez jî xebatê bo vê yekê dikim."

### Partîzanî di partiyên ewropî de çawa ye?

Li Ewropayê, her dengderek dikare bibe endamê partiyeke siyasî. Wekî din jî divê aboneyeke sembolîk bi awayekî rêkûpêk bide partiya xwe. Hinek partiyên çep ji bilî aboneyê daxwaza beşek ji meaşê parlamenter û karbidestên ku li ser lîsteya wan derdikevin, dikin. Gava kesek dibe endamê partiyeke siyasî bi awayekî berdewam ji aliyê serkirdayetiya partiyê bi riya nameyên post û E-mailê ji guherînên dawî û siyasetên partiyê tê agahdarkirin, herwiha hergav belavokên partiya wî bi post û bi belaşî jê re dişînin mal. Mafê endamên partiyên siyasî hene tevî semîner û civîn û qursên siyasî û çandî yên partiyên xwe bibin. Herwiha mafê wan heye ji serok û serkirdayetiya partiyên xwe daxwaza ronîkirinê bikin.



## 14. Festîvala Çand û Sporê ya Ciwanan a Mazlum Dogan pêk hat!

# Xelata şampiyoniyê dîsa Kîwex Kurdistan wergirt



**Koln (Rûdaw) -** Festîvala Çand û Sporê ya Ciwanan a Mazlum Dogan, îsal cara 14. li bajarê Almanya Kolnê bi beşdariya hezaran ciwanan hat li dar xistin. Di festîvalê de gelek beşên sporê hatin leyîstin û tima futbolê ya bi navê Kîwex Kurdistan, Serhildan Sporê 2-0 têk bir û bû şampiyonê festîvala îsal.

Festivala wek hersal îsal jî di bin sloganek cuda de pêk hat. Slogana festîvalê ya îsal "Parastina Çandê Parastina Hebûnê ye." Herwiha festîval îsal jî bi mebesta bîranînê li ser navê ciwanekî kurd hat organîze kirin. 14. festîvala ciwanan îsal li ser navê xortê kurd Mustafa Malkoç ku di meha sibatê de ji aliyê polîsên tirk ve li Bismilê hat kiştin, hat li dar xistin. Di qada festîvalê de herwiha poster û wêneyên ciwanên ku di doza azadiya kurdan de jiyana xwe ji dest dane hatin daliqandin û pankartên ku peyamê siyasî hildigrin, hatin rakirin. Ji bo festîvalê di serî de Almanya, Fransa, Hollanda, Swîsre, Awusturya, Belçîka û ji gelek deverên din beşdarî hebû. Bernameya festîvalê ji bilî beşên sporê yên cûr be cûr, di warê çandî de jî, wek stran û govend, gelek dewlemend bû. Weke her salî di festîvala îsal de jî bi rêya sînevîzyonê peyama Serokê PKKê Abdullah Ocalan bo ciwanan hat pêşkêş kirin.

Di beşa sporê de jî gelek pêşbirk hatin li dar xistin. Tîma futbolê ya ji Munsterê bi navê Kîwex Kurdistan di encamê de bû şampiyon. Ev tîm cara 4ê ku ku di festîvalê de dibe şampiyon. Kîwex Kurdistan di festîvala îsal de jî di fînalê de tîma ji bajarê Hanau hatibû, ya bi navê Serhildanspor, 2-0 têk bir û bû şampiyon. Di festîvalê de Delîlspor bû 3emîn. KurdistanWelatspor jî kupa centîlmeniyê wergirt.

Di bernameya festîvalê de gelek ciwan di beşên sporê yên cihe de hatin hemberî hev û ji bo rêza yekemîniyê ketin pêşbirkê. Ew kesên ketin rêzên pêş ev in:

**• Thai Box:**
*-Bariş Ozbek û Mazlum Osmanoglu beramber man û şampiyonî di navbera xwe de parvekirin.*
*-Di 90 kîloya de jî Guney Keskîn bu yekemîn.*

**• Boks:**
*-Di kîloya 62 de Şeyhmus Omeri bu yekemîn.*
*-Di kîloya 65 de Bawer Ozbek û Îzzet Kurnaz beramber man û şampiyonî di navbere xwe de parvekirin.*
*-Di kîloya 70 de jî Dogan Pozray bu yekemîn.*

**• Bazdana jinan:**
*- Di 100 metroyî de Sultan Damar bû yekemîn.*
*- Gul Çelik bû duyemîn .*
*- Çigdem Kiliç jî bu sêyemîn.*

***Bazdana mêran:***
*-100 metroyî de Ramazan Yilmaz bû yekemîn.*
*-Şoreş Garip jî bû duyemîn*

*Di 400 metroyî de jî Ramazan Yilmaz dîsa bû yekemîn, Delil Ay bû duyemîn û Seyfettin Çakar jî bu sêyemîn.*

### Stran û govend jî hebû

Di festîvalê de hunermendên kurd jî derketin ser dikê û stranên xwe pêşkêş kirin. Hunermendên wek Erol Berxwedan, Rêzan, Rojda, Deniz Dêrsim, Bang, Seyda Perinçek û Koma Kevokên Aştî, bi stranen xwe ciwanan coş kirin. Ciwanan jî li ber stranên hunermendan govend kişandin û têra xwe şah bûn. Wekî din koma govendan a ku ji dehan lîstikvanan pêk dihat, di festîvalê de lîstikek pêşkeş kir. Gava koma govendê derket, dik bi rengên kesk, sor û zer hat xemilandin û dîmenên rengîn derketin holê.

## Diyarbakirspor nikare transferan bike




**Amed (Rûdaw) -** Klûba Diyarbakirsporê xwe ji bo sezona nû amade dike da ku careke din vegere lîga jor. Di çarçova amadekariyan de klûb dixwaze bi transferkirina futbolvanên xwedî ezmûn tîmê nû bike. Lê jiber ku klûbê deynê xwe yê federasyonê û heqdestê çendîn futbolvanan nedaye, nikare transferên nû bike.

Li gor malpera diyarbakirspor.orgê Serokê klûba Diyarbakirsporê Nurullah Edemen hefta borî tevî çend rêvebirên klûbê çû Stenbolê û bi Serokê Federasyona Futbolê ya Tirkiyeyê Mehmet Ali Aydinlar re hevdîtin çêkir û jê xwest ku astangiyan li pêşiyan transferan rake. Edemen piştî hevdîtinê daxuyanî da çapemeniyê û got serokê TFFê Aydinlar bi niyeteke baş guh daye wan, lê ji bo rakirina qedexeyê soz nedaye. Edeman wiha axivî: "Me jê re behsa girîngiya Diyarbakirsporê û wateya wê ji bo herêmê kir. Wî jî got ku gelek klûbên wek Diyarbakirsporê hene ku ji ber deynan êdî nikarin transferên nû bikin û ew wek TFFê nikarin biryarek taybet ji bo Diyarbakirsporê bigirin, lê dibe ku bi TFF biryarek giştî bo hemû klûban bo carek bigire û astengiya li pêşiya wan rabikin."

Edeman bi bîr xist ku deynên transferên berê ku hê nehatine dayîn gelek zêde ye û ji bo çareseriyê alîkariya karsazên Amedê xwest. Edeman got eger deyn neyên dayîn û transfer neyên kirin wê Diyarbakirspor dakeve lîgên amator û wê bê girtin. "Divê Diyarbakirspor li ser lingên xwe bimîne û neyê girtin. Ji bo neyê girtin em ê bi Serokwezîr re jî hevdîtin çêkin."



## Fransa û Almanya li Kurdistanê şano dibin ser kolanê

*Hewlêr (Rûdaw) – Di projeyeke hunerî ya hevbeş de, Fransa û Almanya projeya şanoya ser cadeyan li Hewlêrê birêve dibin. Projeya şanoya ser cadeyan projeyeke hevbeş a di navbera Almanya û Fransa de ye û di projeyê de 4 şanokarên alman û fransî bi mebesta dersgotinê di workshopeke taybet bi şanoya ser cadeyan de, bo Kurdistanê hatine dawetkirin.*

*Di vê workshopê de, 40 zarok û 20 kesên gihiştî li ser şanoya ser cadê tên perwerde kirin. Zarokên ku tevî vê workshopê dibin, zarokên hejar û destteng ên Hewlêrê ne. Ev şano saet 7ê êvara roja 19ê tîrmehê li parka Minare ya Hewlêrê tê pêşkêşkirin.*

# Mişteriyên dînên Silêmaniyê yên berê zêde ne

Wênefiroşek: Dînên Silêmanî yên berê ji yên niha zêdetir tên hezkirin

**Saman Beşaretî** Silêmanî

Li xwaringeha Renc a ku dikeve qata jor a avahiyek biçûk li taxa Eshabespî, dema tu li ser sêlmê diçî jor, tişta yekemîn tê dîtin rêzek wêneyên dînên Silêmaniyê ne ku berî salan dijiyan û di nav piraniya rûniştvanên bajêr de navdar bûn.

Dînên Silêmaniyê ji ber guhertinên lez ên di nava bajêr û milmilanêya salên dawî ya hizban de, wiha li wan hatiye ku bi temamî bên ji bîr kirin. Berî 5 salan dema dînekî Silêmaniyê, ku bi navê Şebab dihat bi nav kirin, jiyana xwe ji dest da, ji bo rêzgirtinê peykerek biçûk di nava çayxaneya Şe'eb de jê re hat ava kirin. Lê niha li Silêmanî pir kêm dîn hene ku girîngiyê bidinê.

Ji salên 60î û peve Ebe Şekene û ji 80yî ve jî Cemal Rîngo dînên Silêmanî yên herî navdar in. Lê niha li wî bajarî ti dîn nîne ku xwedî wî şansî bin û bi qasî kesên xwedî heman fikrî navdariyê peyda bikin.

Qadir Mihemed yek ji wênegirên Silêmaniyê ye û 50 sal e li wî bajarî karê wênegirtinê dike. Niha li dikana xwe ya li ser cadeya Pîremêrd wêneyê beşek zêde ya dînan di nava çarçoveyan de difiroşe.

Qadir beşa herî zêde ya wêneyê dînên Silêmaniyê bi kamereya xwe girtiye û ji Rûdawê re got: "Kêm roj hene ku ji bo kirîna wêneyên van dînan xelk neyên cem min. Ji bo piraniya wan nirx ne girîng e, çend be dikirin. Dibin li dikan û cihên giştî daliqînin."

Dikana Qadir Mihemed li ser cadeya Pîremêrd e. Ew ligel peydakirina pereyan bi wê pîşeyê, bi girtina wêneyên dînên Silêmaniyê ve mijûl bû. Wekî bi xwe dibêje, ji salên 60'î heya niha ew wêne wekî arşîva xwe parastiye û zêdetirî wêneyê 50 dînên ku ligel heyîn, jiyana xwe ji dest dane. Qadir wiha got: "Ji bo ew dîn ji bîranîna mirovên Silêmaniyê neçin û winda nebin, ev 40 sal in wêneyan digirim û di arşîvê de diparêzim." Renc Celal (35) xwediyê xwaringeha Renc e û behsa xwesteka xwe ya ji bo komkirina wêneyên dînên Silêmaniyê dike: "Ji bilî ku daliqandina wêneyên dînan daxwazeka min e, mişteriyên min jî bi daxwazek mezin temaşeyî wêneyan dikin. Çawa be, eger kesek hatibe vê xwaringehê, kêliyekê li ber wan wêneyan rawestiyaye û temaşe kirine."



Wêne: Rûdaw

Wênegir dibêje, beşek zêde ya mirovên bajêr bîranîn wan ligel dînekî ji wan heye û ji ber vê yekê naxwazin bi tevahî ji bîr bikin. Qadir Mihemed dibêje: "Dîn navdar bûn, lewra niha mirov tên û wêneyê wan bi kom dikirin."

Qadir Mihemed dibeje ku hatina dînên derdorê bo bajêr, wisa kiriye ku xelkên bajêr niha wekî berê girîngiyê nadin dînên nava bajêr: "Dînên berê navdar bûn. Mirovên berê gotinên xweş ligel dînan dikirin û hemû dîn jî gotinxweş bûn. Lewra niha gelek mirov tên cem min û wêneyê wan dînan dikirin, lê dînên niha hemû jî bêzar û bê taqet diyarin."

Wêne: Rûdaw

**Dînên berê navdar bûn. Mirovên berê gotinên xweş ligel dînan dikirin û hemû dîn jî gotinxweş bûn**

## Rêxistineke amerîkî rêzefîlmekî kurdî çêdike

**Hewlêr (Rûdaw) – Rêxistineke amerîkî bi navê Akama Nehêniyan rêzefîlmekî kurdî berhem tîne ku ji 10 xelekan pêk tê û dema her xelekekê jî 45 deqîqe ye û behsa şîdeta dijî jinan li Kurdistanê dike.**

**Rêzefîlmê Akama Nehêniyan ji aliyê derhênerê kurd Salar Sultan tê kişandin û butçeya wê ji aliyê rêxistina Heart Land Allince, ku rêxistineke sivîl a amerîkî ye, hatiye dabînkirin. Ev rêxistin lêkolîn û xebatê li ser şîdeta seksî û psîkolojîk û bazirganîkirina bi mirov û koçberan dike. Hejmareke akterên xwedî tecrûbe tevî rêzefîlmê dibin weke: Şemalê Ebereş, Nizar Selamî, Şadî Aram, Hejan Hêriş, Telar Hîranî, Çirîke Kemal, Aso Omer Siware û çend akterên din.**

**Ev rêzefîlm ku behsa şîdeta dijî jinan dike, dest bi wênegirtina wî hatiye kirin û piştî xilas bibe li kanala Kurdsat tê nîşandan û projeyek jî heye dûre bê doblajkirin û li kanala Hurriye de bê pêşkêşkirin.**

**Derhêner Salar Sultan derheqê fîlmê xwe de ji Rûdawê re ragehand: "Civaka kurdî yek ji wan civaka ne ku heya niha ev diyarde tê de zêde ye û hê maye, rast e kêm bûye lê heya niha li derdora bajaran ev diyarde li hinek cihan tê dîtin û Hikûmeta Herêma Kurdistanê li ser vê meseleyê dixebite, lewma me jî kar li ser kir."**

**Di rêzefîlmê Akama Nehêniyan de, behsa hevrikiya navbera du malbatên dewlemend de tê kirin ku di nav vê hevrikiyê de meseleya şîdeta dijî jinan bûye meseleyeke serekî.**

**Salar Sultan ku derhênerê rêzefîlmê Germiyan û Kiwêstan e, amaje da ku rêzefîlmê Akama Nehêniyan li Silêmaniyê û derdora wê tê kişandin.**

# Charlie Chaplin cara duyemîn tê Berlînê!




**Ali Guler**

Qehremanê sînemaya bêdeng Charlie Chaplin, îcar bi 80 fîlmên xwe tê bajarê Berlînê… 80 fîlmên Chaplin ên ji hev cuda, di bin bernemayek teybet de ji aliyê sînemaya Babylon ve bo temaşevanên sînemayê li Berlînê hatiye amade kirin.

Li gor hinekan Chaplin qehremanê hunera heftemîn e, li gor hinekên din jî ew di dîroka sînemayê de aktorê herî mezin e. Lê kî çi dibêje bila bêje ew di jiyana xwe ya sînemayê de aktor, derhêner û nivîskarekî jîr bû. Ya herî girîng jî ew herdem li aliyê xizanan, li dijî nijadperestan û faşîstan bû. Ew herdem çepgirt bû. Gava di sala 1914ê de wi gav avêt nav sînemayê, wê deme di sînemayê de dema bêdengiye bû… Wî di sînemayê de di serî de fîlmên wek, “Êrîşî Zêran”, “Lampên Bajar”, “Dîktatorê Mezin”, “Demên Asrî”, “Sîrk”, “Lampên Sahnê” û di gelek fîlmên din de leyîst. Ew di fîlmên xwe de herdem henekan dikir û temeşavan dida kenandin. Şewqe û gopalê wî herdem bûn sembola wî. Chaplîn di hemû fîlmên xwe de rolên çepgir, alîgirê xizan û li dijî faşîzmê dileyîst. Fîlmê wî “Dîktatorê Mezin” di vî warê de mînak e. Chaplin di vî fîlmê de li dijî Hîtler dertê û wî rexne dike. Wî di jiyana xwe de gelek xelat wergirtiye û mora xwe li bin gelek serkeftiyan xistiye. Dema ku di 1977ê de li Swîsrê çavê xwe ji jiyanê girt jî ket rojevê. Komek diz termê wî didizin û pere dixwazin. Lê ev çalakî bi ser nakeve û 11 rojan şûnde termê Charlie Chaplin di bin avê de tê dîtin û di gorê de tê veşartin…

## ‘Ew cara yekemîn bi hezaran hatibû pêşwazî kirin’

Ev sînemavanên mezin û navdar di sala 1931ê de jî hatiye Berlînê. Gava tê bi hezaran kes ji bo pêşwaziyê li dora otelê dicivin. Tê gotin ku Berlînê heya niha ti şahiyek wisa geş nedîtiye. Ji ber wî ew wek berlînî tê hesibandin. Sînemaya Babylon jî cara duyemîn Charlie Chaplin tîne Berlînê. Îcar bi 80 fîlmên xwe… Bi bernameyek teybet fîlmên Chaplin ji aliyê sînemaya Babylon ve ji bo temaşevanan hatiye amede kirin. Bernameya teybet di 15ê tîrmehê de dest pê dike û heya 7ê tebaxê dom dike.





## Hekîm Sefkan

### “Paparazzo"



Ev gotina îtalî ku tê wateya "Vizîna mêşê" xwedê jê razî be, Federico Fellin di filimeki xwe de, nav li yekî wênekêş dike. Vizîna mêşê ku guhan pir dêşîne, yan jî mirovan aciz dike, ew di dema xwendina xwe de nav li kesên ku pir û vala diaxivîn dikirin. Ji wê demê de êdî paparazzo, yan jî paparazzî ketiye nav zimanan. Bi demê re ev bû stiyleke rojnamegeriyê û bi xêra wê “Vizîna mêşan” ku derdorê aciz dike, gihişt heya cot hev berdin, textê sultanan biheje.

Ji hêlekê de ev rengê saloxan rihê mirov ê birçiyê "tiştên zêde" têr dike, herwiha kesê ku dike jî, "gelacekî" modern e. Yanî bi destûr gelaciyê dike. Li alyê din bi xêra wan gelacan mirov hinek rastiyan jî fêr dibe. Ji çend gotinên gelacan yek jê raste gelo? Ev dibe cihê tevliheviyê.

Bixwe paparazzi, zêde hunera nivisandinê naxwaze, ku mirov hinekî mereqa jiyana kesên din bike ew bes e. Incex kesên ku vî karî dikin, di hêla tenduristiya psîkolojî de nexweş in. Gelek ji wan tabloyan di serê xwe de çêdikin, wê tabloyê wekî ku bûye pêşkêşî me dikin. Beşek ji wan jî, ku beşê zêde ne, çavnebar in, zikreş in, ji jiyana kesên din dihesidin. Tiştên bi dest kesên din (ku navdar in) ketine, ew nikarin bi destxin, loma di her nûçeyeke paparazzî de, yan jî di her wêneyekî de kîneke veşartî, yan jî niyeteke xerab heye.

Di nav Kurdan de, ji ber tunebûna vê yekê, hin tişt li ser navdarên me tên gotin ku, mirovan dîn dikin.

Bi salan e em saloxên pir ketî, bê wate li ser hevalên xwe ên herî nêzîk an jî li ser kesên ji civata hunermendan, dibihîsin. Carina ew salox bûne sedema ku em bi xwe çewt li hev binêrin. Bêguman wekî ku em neferekî vê civatê ne, kêmaniyên me jî hene, lê ji ber ku navekî din jî li ber navê me heye, zuxurê me kevir, dilopa me derya tê dîtin.

Hefteya çûyi em li mêvandariya hevalekî bûn,wekî din jî mêvanên wan hatibûn, gotin çû û hat, hat ser hunermendan, bê guman hemû pirsên wan jî min re bûn, ez jî mecbûrê bersivdayinê bûm. Behsa hevalekî hunermend kirin û jina mêvan dilê xwe pê şewitand: Ma çima jina wî dev jê berda keko?...

Ez ji serê darekê hatim xwarê, ew hevalê min e, ez nizanim, ev çawa zane. Helbet min got ku tiştekî wiha tune ye, lê mêvana mazûbana me serê xwe hejand: Belê belê wele heyfa wî, haya te jê tune....

Bi yek carê re ez hatim bîra xwe, dema ku nema derketim ekranê TV, navê min bi 7 jinan re derket ku ez bi wan re zewicîme... Lê yek jî ne rast bû.

Paparazziya Kurdan tune; loma jî gel van gotinan li nav hev digerîne. Xwedêgiravî hinek kes dixwazin vî karî bikin, lê bi yek gotin “Vizîna Mêşê” ne, ne tenê guh, mida mirov jî li hev dixin.

## Serokê CHPê Kemal Kiliçdaroglu ji Rûdawê re axivî:

# Kêşeya Kurd ne tenê aborî û çandî, lê siyasî ye jî

CHPê di bin serokatiya Kemal Kiliçdaroglu de, di hilbijartinên 12ê Hezîrana borî de karibû hejmara deng û kursiyên xwe zêdetir bike. Bi hatina Kiliçdaroglu bo serokatiya CHPê, guherîneke bingehînî di helwesta CHPê li hemberî kêşeya Kurd berbichav bû. Kiliçdaroglu di vê hevpeyvîna ligel Rûdawê de, ku yekemîn hevpeyvîna wî ye ligel rojnameyeke kurdî, behsa dîtina partiya xwe bo çareseriya kêşeya Kurd li Bakurê Kurdistanê, têkiliyên Tirkiye ligel Îraq û Herêma Kurdistanê û çend babetên din dike.

**Rûdaw: Hûn tabloya siyasî ya Tirkiyeyê piştî hilbijartina parlementoya nû çawa dibînin?**

**Kiliçdaroglu:** Pêşî pêwîst e amaje bidin wê yekê ku rêjeya bilind a beşdarîkirinê di hilbijartinan de, ku ji sedî 95ê dengderan bû, di rengvedana vîna millet li parlamento bo demokrasiya Tirkiyeyê pir girîng bû. Lê di heman demê de girtina rê li ber beşdarbûna parlementerên ku millet ew hilbijartibûn ji çûyîna nav parlamentoyê, zererê digihîne demokrasiya me. Her hilbijartinek eger armanceke zêde taybetî ya dîrokî lixwe negire, di aliyê siyasî, civakî û aborî de nabe xala fetlînokê. Guherîn di berdewamiyeke diyarkirî de rû dide. Li Tirkiyeyê terazûya di navbera desthilat û opozisyonê de neguherî, lê peyama guherînê ligel xwe jî anî. Di hilbijartinên vê carê de CHP di warê zêdebûna rêjeya dengan û hejmara kursiyan de li pêşiya hemû partiyan e û bi vî awayî jî ew peyam gihişte me ku divê em xwe zêdetir biwestînin, siyasetê berhem bînin û civakê ji hev nêzîk bikin. Eger em bikarin vê yekê bi awayekî herî baş bikin, êdî ji dil piştrast im ku em ê bigihin desthilatê. Encamên hilbijartinê piştgiriyeke berfireh ji AKPê re jî dabîn kir bo çareserkirina kêşeyên Tirkiyeyê, lê divê em wê yekê jî bizanin ku ev piştgiriya civakî ji AKPê re ne tiştekî berdewam dibe. Ger AKPê sozên ku dane xelkê bi cih neyîne, civak careke din bi awayekî demokratîk bersiva pêwîst dide.

**Krîza ku piştî hilbijartinan ji ber biryara Dezgeha Bilind a Hilbijartin (YSK) derket holê, çawa dinirxînin?**

CHPê parêzvaniya şertê bingehîn yê demokrasyê, yanî ji hev cudakirina desthilatan, dike. Em dijî têkilkirina desthilatên yasadanîn, cîbicîkirin û dadwerî ne. Biryarên cuda cuda yên YSKê di vî alî de berî hilbijartinan nîşan dide ku siyaseteke rast nemeşandiye. Bi baweriya min pirsa te derbarê wan çend parlamenteran e ku dadgehê biryara azadkirina wan neda, çimkî tabloya negatîf a îro heye ji vê biryarê çêbûye. Welatê me berî çend salan di vî warî de derbarê serokwezîr birêz Recep Tayyip Erdogan de biryareke bi vî rengî da, CHPê jî helwêsteke demokratîk nîşan da û rêya wê yekê vekir ku birêz Erdogan bibe serokwezîr. Em weke CHPê bo wan hevalên me yên ku weke parlementer hatine hilbijartin ji xênî parêzvaniya parlemenî tiştekî din yê cihê naxwazin. Em nabêjin bila neyên dadgehkirin, daxwaza lêborînê jî ji wan re nakin. Hevalên me nehatine mahkûmkirin, ti astengekî xweberbijarkirinê li pêşberî wan nebû, li dadgehê û YSKê belgeya mafê endamtiya xwe di parlementoyê de wergirtine, ji aliyê YSKê derketina wan hatiye piştrastkirin. Pêwîste rêz li vîna niştimanî yan dengder û dengan bê girtin. Em daxwaz dikin mafê dadgehkirina ti kesî neyê binpêkirin û ti kes jî bê belge neyê tometbarkirin. CHP ne ku tenê bo hevalên xwe, lê pêwîst dibîne di hemû rewşan de jî rêz li îradeya niştimanî bê girtin û dijî neheqiyên ku himber parlementerên din jî hatine kirin derketiye û derdikeve. Bêguman HSYK (Dezgeha Bilind a Dadwer û Dozgeran) ku wezîrê dadê serokatiya wê dike û dadwer û dozgerên wê destnîşan dike, dadmendî ji nav bir, ew biryar dadwerî tê de tune û li gor bingehên gerdûnî û destûrê nalive. Bêguman çênabe li welatekî qala demokrasiyê bê kirin ku dadgeh li gor daxwaz û xwestina berpirsên desthilatê kar bike.

**CHP çawa berê xwe dide çareseriya kêşeya kurd?**

Li Tirkiyeyê gelek pêkhate hene. Çend etnîkên cuda, baweriyên cuda û çandên cuda ew xalên hevbeş in ku hevwelatiyên Komara Tirkiyeyê bi hevre girêdide. CHP dibîne ku nasname şanaziya hevwelatiyan e. CHP di çarçoveya mafên mirovan û piranî berê xwe dide daxwaza nasîna nasnameyên cuda. Di vî alî de ew grûba ku ji hemûyan zêdetir qala daxwazên xwe dike hevwelatiyên kurd in. Bi dîtina CHPê kêşeya hevwelatiyên kurd bi tevahî bi rêya demokratîkbûnê çareser dibe. Mafê wekhevî û bingehên mafê hevwelatîbûnê bingeha çareseriyê ye. CHP ji bo çareseriya kêşeya rojhilat, başûrê rojhilat û kêşeya Kurd nûnertiya rêya sêyemîn dike. Rêya sêyemîn ku CHP pêkutiyê li ser dike, pêk tê ji wê yekê ku nasnameya etnîkî rûmeta takekesan e, ligel vêya jî dijî her siyasetekê ye ku li ser bingeha etnîk û olê bê meşandin. Rêya sêyemîn vê pirsê piralî dibîne û bi baweriya wê kêşe ne tenê aborî yan çandî ye, lê siyasî ye jî. Bo çareseriyê jî pêwîst dibîne di aliyên çandî, aborî, civakî û siyasî de çend gav bên avêtin. Ji alîkî ewên ku dibêjin `kêşeya Kurd tune`, ji alîkî din ewên ku nekarîne ramaneke hevbeş biafirînin, nikarin zemîneke hevbeş ya gerdûnî bo çareseriya vê pirsê amade bikin. Lê CHP ji alîkî li hebûna pirsê mikûr tê û di çarçoveya azadî û demokrasiyê de projeya çareseriyê berhem tîne, ji aliyê din jî hewl dide zimanekî hevgirtî bo raya giştî ya hemû Tirkiyeyê amade bike, ku baweriyê bi çareseriya kêşeyê bîne. Dîsa derbarê naskirina nasnameya kurdî, giringtirîn mesele naskirina ziman û fêrbûna zimanê kurdî ye. Serastkirina yasaya 2932 ku ji aliyê rêjîma 12ê Îlonê hat sepandin û reformkirina mantiqa civakê sûdmend dibe bo vê mebestê. Axaftina mirov bi zimanê dayikê, fêrbûna zimanê dayikê mafekî mirovî ye. Pêwîst e pêdiviyên fêrbûna zimanê dayikê bên misogerkirin, di heman demê de pêwîst e çavkaniyên raya giştî piştgiriya van hewldanan bikin. CHP tena partî ye ku projeya çareseriya aborî pêşkêş kir. Bêkarî û hejarî li rojhilat û başûrê rojhilatê Anadolê kêşeyeke zehf giring e. CHP di rapora 'vejandina aborî li rojhilat û başûrê rojhilatê Anadolê' de pêşniyar dike salane vejandina aborî li vê herêmê bigihe ji sedî 9.5. Ji bo çareseriya vê kêşeyê pêwîst e bi awayekî ciddî hemû alî hewldana çêkirina proseyeke aştiya civakî bidin. Li Tirkiyeyê li ser kêşeya kurd ji sala 1989ê ve heya îro CHPê raporên herî berfireh bo çareseriyê amade kirine. CHP tena partî ye ku heya îro xwestibe bo çareseriya vê pirsê hemû tiwêjeyan kom bike û hest û siyaseteke hevbeş bîne holê.

**Axaftina mirov bi zimanê dayikê, fêrbûna zimanê dayikê mafekî mirovî ye. Pêwîst e pêdiviyên fêrbûna zimanê dayikê bên misogerkirin, di heman demê de pêwîst e çavkaniyên raya giştî piştgiriya van hewldanan bikin**



**Çi têbîniyên we li ser pêwendiyên Îraq û Tirkiyeyê, Herêma Kurdistanê û Tirkiyeyê hene?**

CHP dixwaze li hemû welatên cîranên Tirkiyeyê, Îraq jî di nav de, rêveberiyeke demokratîk û azadîxwaz li ser desthilatê be û li ser bingeha têgeha aştiya civakî, wekhevî û mafên mirovan civakê birêve bibin. Tirkiye herdem dixwaze li Îraqê demokrasî û aştî bicih bibin. Xelkê Îraqê bi salan di bin zexteke berfireh de hatine binpêkirin, rêjîmên Îraqê herdem welatê xwe berbi şer birine, lewra derfeteke saxlem bo aştiyê nehatiye holê. Bi baweriya me, berî hemû tiştî ji gelê Îraqê re aştî û aramî pêwîst e. Tirkiye jî di vî alî de piştgiriya Îraqê dike, îro û di dema bê de jî berdewam dibe li ser vê piştgiriyê. CHP weke parçeyeke serbixwe ya Îraqê, lê di bingeh de weke pêkhateyeke bi Îraqê ve girêdayî, li îdareya herêmê dinêre. Îro bajarên di bin desthilata îdareya herêmê de ne, roleke girîng di pêşketin û germbûna atmosfera pêwendiyên Îraq û Tirkiyeyê de dilîzin. Li gor CHPê, ev pêwendî xizmeta aştiyê li navçeya me dikin. Her çiqasî ev pêwendî bêtir pêwendiyên aborî bin jî, lê belê dîsa jî bi derbasbûna demê re ev têkiliyên aborî xurt dibin û digihine astê têkiliyên civakî û çandî. Pêşketina pêwendiyan çiqasî hevwelatiyên me dilxweş dike, bi wî rengî jî ev yek me xemgîn dike ku xaka herêmê weke bingehekê bo êrîşkirina ser welat û welatiyên me bê bikaranîn. Em bê şert û qeyd piştgiriya aştiyê dikin, lê di heman demê de dijî şîdet û terorê ne.

**CHP çawa li bûyerên Sûriyê dinêre?**

CHP polîtîka serkutkirina rêjîma Sûriyê û welatên din ên erebî, ku li navçeyê himber daxwazên rewa yên hevwelatiyan bo demokrasî, azadî û jiyaneke xweş dimeşînin, qebûl nake. Pêwîst e welatên navçeya me li pêşketinên ku dewletên cîhanê û mirovatî di warê rêvebirî û jiyana rojane de gihiştinê, mikur werin. Pêşketina teknolojiya agahî û guhastinê her tiştî eşkere dike ku çi li cîhanê diqewime û mirov çawa dijîn. Îro welatên Rojhilata Navîn nikarin hikûmetekê bidomînin ku sîstema wê ligel pêşketina cîhanê nagunce, xelk jî dijî vê yekê serî hildide. CHP piştgiriya wê yekê dike ku ev welat di warê demokratîk de bigihin asta welatên cîhanê.

***Hevpeyvîn: Hêmin Xoşnaw***

## Yasaya hilberînê zevî li Kurdistanê nehiştin

# ‘Zevî belaş werdigirin û xaniyan giran difiroşin’

Saman Beşaretî

Şirketên warê niştecihbûnê zevî bi nirxekî pir erzan ji hikûmetê werdigirin, lê xaniyên ku ava dikin bi nirxekî pir giran difiroşin û hevwelatî jî dibêjin kirîna wan ne mimkûn e.

Bi mebesta çareserkirina pirsgirêka koçberiyê, hikûmet bi rêya yasaya hilberînê hêsaniyên zêde dide şirketan da ku xanî û avahiyan lê bikin, lê bi baweriya welatî û berpirsên hikûmetê tevî van hêsankariyan jî, şirket nikarin pirsgirêka niştecihbûnê çareser bikin.

Berpirsê beşê zeviyan li şaredariya Silêmaniyê Elî Omer ji Rûdawê re ragehand, di bernameya wan de ye zeviyên ku şirketan wergirtine û heya niha kar di wan de nekirine, werbigirin: “Niha ti zevî li ber destê şaredariya Silêmaniyê nînin parve bike, lê eger em van zeviyan ku bi sedan hektar in, werbigirin, em dikarin wan li ser fermanberan dabeş bikin.”



Li Herêma Kurdistanê zevî bi nirxekî pir hindik, wek ji% 2-3 nirxê xwe bo şirketan erzan tê firotin

### Zeviyên erzan, xaniyên biha

Bi baweriya navbirî nirxê avahiyên gelek şirketan pir giran e: “Tevî ku bi pereyên sembolîk zevî werdigirin, hinek şirket xaniyekî bi 60 hezar dolaran dide, lê metroya zevî bi 2 dolaran wergirtiye.”

Li gor yasaya desteya hilberînê jib o şirket avahiyên niştecihbûnê ava bikin, hikûmet zeviyan dde wan. Komîteyek ji şaredarî û desteya hilberînê tê çêkirin da ku nirxê zevî destnîşan bike.

Parlamenter jî dibêjin, şirketên warê niştecihbûnê hêsaniyên zêde ji aliyê desteya hilberînê werdigirin, nemaze di dayîna zevî bi nirxekî pir erzan de, lê kêm kes ji wan sûdemend dibin.

Serokê Fraksiyona Goran li Parlamentoya Kurdistanê Kardo Mihemed dibêje: “Piraniya van şirketan malê hizbê ne, zeviya vî welatî belaş didin wan û bi kêfa xwe jî xaniyên ku lêdikin difiroşin welatiyan; ji dewlemendkirina şirketan zêde tiştekî din tune.”

Kardo Mihemed amaje da ku jib o karê hilberînê demeke dirêj e proje-yasayek dane serokayetiya parlamento: “Çimkî yasaya niha ya ku desteya hilberînê kar pê dike, gelek kêmasî tê de hene û ne di qazanca hejaran de ye.”

Navbirî qala kêmasiyên yasayê kir û got: “Di yasayê de hatiye her kesek eger xwediyê 250 milyon dînaran bû dikare karê hilberînê bike. Dibe ku kesek eger ne bazirgan be jî bikare zevî werbigire û dûre bifiroşe kesekî din, lê me di proje-yasaya xwe de daxwaz kiriye ku divê veberhêner xwediyê 12 milyar dînaran be û ji nû ve bikare zevî werbigire. Yasaya hilberînê zevî li Kurdistanê nehiştin.”

**Hevwelatiyek: Hikûmet tenê şirketan dewlemend dike**

Rêveberê Giştî yê Desteya Hilberînê ya Silêmaniyê Ferman Xerîb dibêje: “Ne karê me ye em pirsgirêka niştecihbûnê çareser bikin, karê me ew e şirketan taşwîq bikin ku li Kurdistanê kar bikin.” Lê bi baweriya Ferman Xerîb bandora wan jî hebûye di çareserkirina kirîza niştecihbûnê de: “Niha zêdeyî 90 hezar cihên niştecihbûnê li seranserê Kurdistanê tên ava kirin.”

Li gor rêbazên desteya hilberînê, her metroyeke zevî bi nîv dolarî tê firotin bo şirketên ku xaniyan ji kesên destteng re ava dikin. Bi baweriya Ferman Xerîb: “Plana hikûmetê ne serkeftî bû di dayîna zeviyan bo şirketan bi vî aliyê şirketan bi wan pereyên zêde, ji bilî zerera hejar û hikûmetê ev ne tiştekî din bû.”

Hevwelatî bi ava kirina yekîneyên niştecihbûnê ji aliyê şirketan qet ne kêfxweş in û dibêjin ji bilî ku nirxê wan giran e, qalîteya wan jî nizim e.

Ehmed Ebdulla ku ji Silêmaniyê ye, dibêje: “Hikûmet tenê şirketan dewlemend dike û zeviya vî welatî vala dide, çimkî kesên ku van xaniyan bi 100-150 hezar dolaran dikirin ne feqîr û hejar in. Materyalên ku di xaniyan de bikar tînin pir xirab û pîs in.”

Serokê Desteya Hilberînê Hêriş Muherem derbarê awayê dayina zeviyan bo veberhêneran bo projeyan dibêje: “Li gor yasaya hilberînê zevî tê dayîn, weke taşwîqkirinekê jî zevî bi ji sedî 2-3 nirxê zevî tê dayîn.”

Xwediyên şirketan jî red dikin ku qazanceke zêde ji projeyên xwe dikin.

Xwediyê şirketa Nalya Şasiwar Ebdulwahid ku niha projeyeke niştecihbûnê li Silêmaniyê bi navê Kurd City ava dike, dibêje: “Zeviyê projeya Kurd City 120 donim e, lê me 20 donim kirin vîla û firotin, 100 donimên din jî bûne xizmetguzarî.”

Şasiwar baş dibîne eger hikûmet rê bigire li ber firotina xaniyên ku bi qistan didin hevwelatiyan, da ku hejar sûdê jê werbigirin. Şasiwar ji bo çareseriya kirîza niştecihbûnê jî pêşniyarekê datîne pêşiya hikûmetê û dibêje: “Wisa baş e ji niha şûnde hikûmet projeyên ku dide hilberînê neçar bike ji sedî 60ê proje bo hejaran be, ji sedî 20 bo navsere û 20 jî bo dewlemendan be, da ku kêşe bê çareser kirin, wê demê jî rê tê girtin li ber van şirketan ku bi awayekî zêde qazanc dikin.”

### Zeviyên çandiniyê kêm dibin

Li gor mamosteyekî aborî li zanîngeha Selahedînê, dabeşkirina zeviyên çandiniyê bûye sedemê kêmkirina zeviyên çandiniyê li Kurdistanê û bi rêya şirketan dibe sedemê gendeliyeke mezin.

Mamoste Eyub Simaqeyî dibêje: “Yasaya hilberînê mezintirîn xeletiya hikûmetê ye û di xizmeta şirketan de ye û ti şertek jî li pêşber wan nedaniye, lewma ava kirina wan yekîneyên niştecihbûnê ji bilî ku zerer gihandin xelkê tiştekî din nekirin.”

Bi baweriya Simaqeyî: “Ji bo pirsgirêka niştecihbûnê çareseriya herî baş sekinandina van projeyan û sererastkirina yasaya hilberînê ye.”

## Jinek bi şewitîn jiyana xwe ji dest da

*Hewlêr (Rûdaw) – Roja 9ê tîrmehê jineke rûniştevana taxa Xaneqa ya Hewlêrê bi şewitîn jiyana xwe ji dest da. Jina bi navê B.Î.M ji ber şewitînê bo nexweşxaneyan hawarçûnê hat rêkirin û di heman rojê de mir. Ji ber zêdebûna rêjeya şewitînê guman ji xweşewitandina vê jinê tê kirin, lê B.I.M nikaribû îfadeya xwe bide. Çavkaniyeke polîsan ji Rûdawê re got: "Termê B.I.M ji pizîşkê dadwerî re hat şandin. Lê hê jî me îfadeya kesûkarên wê wernegirtiye, ji ber mijûlbûna wan bi merasimên veşartina B.I.M re."*



- **Kurdistan yekemîn welatê Rojhilata Navîn û Afrîka ye ku sinetkirina jinan qedexe dike**
- **Rêveberê Rêxistina WADI ya alman, von der Osten-Sacken: Ev yasa weke zaroka min e**
- **Karê ciddî piştî pesendkirina yasayê destpê dike**

### Li dijî sinetkirina keçan gaveke dîrokî

# Kurdistan di Rojhilata Navîn û Afrîka de bû 1.



Li Siûdî, Urdun, Misir û Ummanê jî rêjeyek zêde keç tên sinet kirin

**Hawar Ebdulrezaq**

Yasaya nehiştina şîdeta malbatî ku sinetkirina keçan jî qedexe dike, heftiya borî li parlamentoya Kurdistanê hat pesendkirin. Berpirs û Damezrênerê Rêxistina WADI ya Alman Thomas von der Osten-Sacken vê yasayê weke "zarok"ekî xwe dibîne û weke "destkefteke mezin" lê dinêre, lê dibêje: "Karê ciddî piştî pejirandina yasayê destpê dike". Osten di wê baweriyê de ye ku tenê derxistina yasayê ji bo nehiştina vê fênomenê têr nake, lê dibêje: "Kurdistan tena navçeya Rojhilata Navîn û Afrîka ye ku yasayeke bi vî rengî derxistiye."

Rêxistina WADI bi vejandina mafên mirov û demokrasiyê re mijûl e û giringiyê dide pirsgirêkên jin û zarokan. Thomas von der Osten ku damezrênerê vê rêxistinê ye, nêzîka 20 sal in li Kurdistanê di van waran de kar dike, lewra jî şehrezabûneke mezin li ser pirsên civakî û çandî yên civaka kurd peyde kiriye.

Di 2004ê de, Osten ji bo nehiştina diyardeya sinetkirina jinan li Herêma Kurdistanê dest bi kampanyeke berfireh kir. Îstatîkên Rêxistina WADI li ser rêjeya xetenekirinê li Kurdistanê pir balkêş bûn û jixwe ev bû sedemê gengeşe di navbera navendên olî û navendên parastina mafên jinan de, derkeve. Encama van gengeşeyan jî, ew bû di sala 2008ê de proje-yasaya nehiştina şîdeta malbatî bi piştîvaniya Hikûmeta Herêma Kurdistanê hat danîn, ku heftiya çûyî parlamentoya Kurdistanê pesend kir. Yek ji madeyên wê jî sinetkirina jinan weke tawan dide naskirin û ceza bo dehifder û cîbicîkerên wê diyar kiriye. Osten-Sacken dibêje: "Lewra ev yasa weke zarokekî min e."



Damezrênerê WADI Osten-Sacken

**Hevalên min li Misirê ev 20 sal in li dijî sinetkirina keçan têdikoşin. Li Kurdistanê me di 3-4 salan de encam girtin. Ev tiştek erênî ye bo Kurdan.**

### Parlamento sê sal dereng ma

Osten-Sacker dixwest ku Herêma Kurdistanê zûtir ev pêngav bavêta: "Cihê mixabiniyê ye ku parlamento sê salan ma heya ku ev yasa derxist û di vê navberê de jî bi hezaran keç hatin sinetkirin." Lê Tirsa Thomas von der Osten - Sacker heye ku neyê pêkanîn: "Karê ciddî piştî pesendkirina yasayê destpê dike, çimkî nehiştina vê fênomenê tenê bi pesendkirina yasayekê nayê kirin, weke me berê di yasaya qedexekirina kuştinê bi behaneya parastina namûsê de dît, herdem kêşeya cîbicîkirinê heye."

Li gor Osten-Sacker eger aliyên pêwendîdar û civak bi xwe vê yasayê ciddî werbigirin û li ser nehiştina sinetkitina jinan pêkut bin, bicihkirina yasayê garantî ye. Di vê çarçoveyê de jî pêwîst dibîne ku ji bo mamoste û oldaran kampanya hişyarkirin û vekirina kursên perwerdeyê bê dirêjkirin.

Osten-Sacken bi piştrastî dibêje biryardana vê yasayê li cîhanê wêneyekî erênî li ser Kurdistanê çêdike: "Wêne baştir dibû eger yasa çend salan berî niha bihata pesendkirin."

Herêma Kurdistanê bi derxistina vê yasayê weke ku Thomas von der Osten-Sacken dibêje, dibe tena navçeya Rojhilata Navîn û Afrîka ku yasayeke bi vî rengî derdixe: "Weke em zanin li welatên wek Siudiyê, Misir, beşekî Urdun û Oman û welatên Efrîqî jî ev diyarde heye, lê li van welatan ti kes qala vê diyardeyê nake, ev tiştekî erênî ye bo Kurdan."

### Zêdetirîn rêjeya sinetkirina keçan li devera Pişder e

Li gor lêkolîna herî dawî ya Rêxistina WADI ku di 2008ê de li ser Hewlêr û Silêmaniyê û Germiyan hatiye kirin, rêjeya xetenekirina jinan li van navçeyan ji sedî 66 bû. Rêxistina WADI niha jî lêkolîneke taybet li ser Kerkûkê çêdike. Osten-Sacker got: "Rêjeya sinetkirina keçan ji navçeyekê heya yeke din diguhere. Li hinek deveran rêje ji sedî 100 e, mînak zêdetirîn rêjeya sinetkirina keçan li devera Pişder e ku Ranya û Qeladizê jî lixwe digire. Herwiha li Hewlêr û Silêmaniyê jî bilind e."

Nehîştina sinetkirina jinan ku tê gotin kevneşopiyeke Firewnî ye û ji zemanên kevin derbasî civakên deverê bûye, Osten-Sacken dibêje: "Hevalên min li Misirê ji bo nehiştina sinetkirina jinan ev nêzîka 20 sal in berdewam in, lê li Kurdistanê ev 4-5 sal in kampanya destpê kiriye. Ger li Kurdistanê bi heman lezgîniyê ev prose bê bicihkirin, Kurdistan dikare bide pêşiya gelek welatên ku ev diyarde li wan heye."

# Tirkiye di navbera şer û aştiyê de



**Kawe Emîn**

Kêşeya kurd di van 3 salên dawî de û nemaze jî piştî gotûbêjên navbera birêz Abdullah Ocalan û dewleta tirk de ku hem aliyê kurd û hem jî aliyê tirk piştrast dikin, piyê xwe avêtiye qonaxeke nû. Hilbijartinên 15ê Hezîrana çûyî jî ku bi qazanca nûnerên kurd û AKPê bidawî hatin, para ewqasî kun û qorziyên tarî jî ronî kirin ku êdî mirov bê dudilî bêje kêşeya kurd bûye rojeva ne tenê siyasetmedar û ragehandina Tirkiyeyê, lê yê beşekî mezin ê civaka Tirkiyeyê û Bakurê Kurdistanê jî. Berê ger peyva kurd û peyveke kurdî qedexe bû, niha Kurdbûn şanaziyeke mezin e, Kurdan ewqasî cesaret peyde kirine va ye parlamenterekî kurd ji dewleta tirk re dibêje: "Ewên li cem we terorîst in li cem me qehreman in."

Pêdiviya vê gotinê bi şirovekirinê tune, Tirkan jî baş ji wê yekê fam kirine ku êdî heyama salên 30an nîne ku bikarin Kurdan di şikeftan de bişewitînin, û haya Amedê ji Dêrsimê nebe. Rast e dinya guheriye û Tirkiye jî divê xwe biguherîne, lê her guherînek li Tirkiyeyê di qazanca Kurdan de bê kirin, berhema xwîna hezarên qurbaniyan û xwîn û kedeke zêde li ser hatiye rêtin, nabe weke ciwanmêriya Erdogan bê temaşe kirin, çimkî dagîrker jiber xwe daxwazên dagirkiriyan bicih nayîne.

Aliyê kurd pir caran inîsiyatîf kiriye û projeya çareserkirina kêşeya kurd daye destê desthilatdarên Tirkiyeyê, lê Tirkan heya niha bi pratîkî ti gaveke ciddî nedane, hiştina nûnerên kurd li zindanê, tevî hilbijartina wan ji aliyê kurdan, ne ku tenê binpêkirina qanunên wan bi xwe ye lê rasterast biçûkxistina îradeya gelê kurd e. Axir kesekî weke Hatîp Dîcle ku zêdeyî 80 hezar dengan aniye, van dengderan zanibûn ku Hatîp Dîcle û hevalên wî, bi çi tawanekê avêtine zindanê û bi çi yasayekê

> **Eger Erdogan bixwaze dikare rêçika De Klerk bimeşîne**

jî tên dadgehkirin, Yasaya Dijî Terorê, eger wisa be zêdeyî 300 hezar dengderên kurd dengê xwe li dijî vê yasayê dane.

Di demekê de ku qala konferanseke netewî bo Kurdan tê kirin û hatina şanda Eniya Ked û Demokrasiyê berî hilbijartinan bo gotûbêjkirina vê konferansê, pêwîst e Kurd li herçar parçên Kurdistanê piştgiriya helwêsta aştiyane ya PKKê û birêz Abdullah Ocalan bike, di vir de jî helwêsta birêz Nêçîrvan Barzanî pir girîng bû, hem di aliyê exlaqî û hem jî di warê siyasî de, gava got: "Gok li aliyê Enqere ye û divê rola Ocalan liberçav bê girtin."

Niha hinek rojnamevanên tirk ku hem demokratîk diramin û hem jî xema paşeroja welatê xwe dixun, heman raya wan heye û fêm kirine ku Ocalan dikare bi roleke yekalîker bilîze, va ye birêz Murat Karayilan bi awakî eşkere di hevpeyvîna xwe de ligel Rûdawê dibêje: "Ocalan vîna me ye û tena muxatab e ku Tirkiye bikare pê re bide û bistîne li ser çareseriya kêşeya kurd."

Aliyê tirk bi taybetî jî Erdogan dikare dawî li vê kêşeya mezin bîne ku 80 sal in hebûna wê înkar dikin. Serokkomarê Afrîka Başûr De Klerk gava fêm kir ku êdî nikarin polîtîka Aparthied bidomînin, destê xwe xist nav destê Mandela. Tevî ku ev karê wî heya ji aliyê hejmareke zêde ya endamên partiya wî jî weke xiyanetê dihat dîtin, lê di dawî de beşê herî zêde yê welatê wî spasiya wî kirin û xelata Nobelê ya aştiyê jî stand. Zemîneya çareserkirina kêşeya kurd niha ji her demeke din baştir e, lewma eger Erdogan bixwaze, dikare heman rêçika De Kelerk bimeşîne û wan girêkên kor ku heya niha jî artêşa tirk datîne pêşber siyasetmedaran, veke.

Avêtina gaveke wisa dibe sedemek ku gruba 36 kesî ya Kurdan li parlamentoyê piştgiriya wî bikin. Tirkiye bi çareserkirina kêşeya kurd bi awayekî aştiyane dikare piştgiriya Kurdên parçên din ên Kurdistanê jî bidest bixe, wekî dî zerermendê herî mezin Tirkiye dibe, çimkî kêşeya kurd dibe rêgira serekî li pêşber endamtiya YE, Erdogan jî nikare projeyên xwe yên aborî ku heya niha serkeftin bidestve anîne bidomîne û pir dijwar e partiya wî bikare heya 4 salên din desthilata xwe ya siyasî bidomîne.

---

# Raya min li ser bersivên Dr. Cewad Mela



**Keça Kurd**

Hevpeyvîna ku Rûdawê di hejmara 101ê de bi Dr. Cewad Mela re kiri bû, dixwazim li ser hin xalan raya xwe ji xwendevanan re rave bikim.

Li gorî raya mamosta li Sûriyê gelê ereb nîne û Ereb jî ne Ereb in. Mamosta pal dide ser dîroka ji beriya hezarên salan, ji beriya misilmanî ku Kurd li wir bûne. Lê, Ereb paş ayina misilmanî hatine Sûriyê. Ji rexekî ve Ereban tune dike û dîsa vedigere, dibêje bi dema misilmanî re hatine Sûriyê.

Bi vî rengî mamosta 20 milyon Ereb li Sûriyê tune dike. Û dide xuya kirin ku Sûriyê Welatê Kurdan e.

Ez ne bi vê rayê re me û di vê dema nazikî şoreşê de, ev bîr û baweriyên şaş ne ji berjewendiya Kurdan de ne û nabe em van deriyan li xwe vekin.

Sûriye dewleteke erebî ye û parçek ji erdê Kurdistanê dikeve bakurê rojhilatê wê. Daxwaziyê me jî hene, em miletekî ji gelê ereb cuda ne û hin mafên me hene divê ji me re bi cih bikin. Lê di vê dema dijwar de ku Ereban bi hezaran şehîd û winda hene, bi hezaran girtî di bin azardanê de ne û hêşte çar mirovên me di xwepêşandanan de şehîd nebûne, bi ser de jî em xwe bikin xwediyê welat û wan tune bikin, kes vê yekê napejirîne.

Lê dîsa mamosta ji raya xwe peya dibe û dibêje: "3 milyon Kurd li Sûriyê dijîn ku bi zimanê kurdî diaxivin û çanda xwe parastine. 3 milyon Kurdên me yên din jî hene ku bi erebî diaxivin û kurdî jibîr kirine ji ber erebkirinê..."

Li vir hejmara Kurdan li gorî raya mamosta Cewadî dibe 6 milyon. Lê ev careke din dibêje hejmara Kurdan nêzîkî nîvê gelê sûriyê ye. Li vir divê hejmara Kurdan bigihe12 milyonan. Bi rastî mirov dibîne ku tevlihevîyek di raya mamostayî de ber çav dikeve.

Ez vegerim ser wan 3 milyonên winda, herwekî mamosta wiha binav dike. Ez nabêjim ku ew erebkirî ne, ji ber ku li encama rewşên xerab ji welatên xwe dûr ketine, an jî li ser dema Osmaniyan Kurd ji welatê wan dûr dikirin, an jî ji ber hoyin din be, di nav Ereban de bi sedên salan mane û xwe bi xwe bûne Ereb.Vêca weke hatiye naskirin li sê deverên Sûriyê bi cih bûne:

1-Li bajarê Qerdaha û devera beravê (bajarê malbata Esed), di hin jêderan de û ji devê xelkên wê deverê, min bixwe jî ji kesekî ji xelkên Qerdaha bihîstiye, dibêjin ku papîrên wan gotine di koka xwe de Kurd in û ta roja îro gelek peyvên kurdî di nav zimanê wan de mane. Di jêderekî de jî hatiye ku dibêje, malbata Hafiz Elesed ji çiyayê Şingalê barkirine û li devera beravê cihgirtine. Lê dîsa ez dibêjim, wê nagihîne ku em wan di nav Kurdan de bihejmêrin, ji ber ku ew xwe Ereb dibînin.

> **Mamoste 20 milyon Erebên Sûriyê tune dike...**

2-Li bajarê Hemayê û li deverê dora wê eşîra Beraziya heye, lê gelekî hindik in ewên ku dibêjin em Kurd in.

3-Li bajarê Şamê, Kurdên ku ew jî ji beriya sedên salan li wir bicih bûne, di nav wan de jî hin hene ku dibêjin di koka xwe de em kurd in.

Doktor di bersiveke xwe de, dide xuyakirin ku herdu partiyên deshelata hukûmeta Kurdistanê, ango PDK û YNK ideolojiyek nîne ku bikarin gelê Kurd rizgar kin û bikarin bingehê dewleta kurdî deynin. Careke din ji serok Mesûd Barzanî dixwaze, û xemlîsî ji aliyê wî dibîne ku çima dev ji bajarê Selahedîn naberde û naçe li hemrînê narûne û nabêje vaye sînorê Kurdistanê. Hingê wê Kurd hemû li gel wî bin. Di raya mamosta de ev dijberî û xwepêşandanên li Kurdistanê rûdidin ji bo van hoyan e.

Li gorî raya Doktor damezrandina dewleteke kurdî gelekî hêsan e, lê ev herdu partî nizanin bingehê wê deynin û xebatê ji bo wê nakin.

Ma gelo bêhtir ji 162 hezar di enfalan de bûne qurbanî çi? Ma ev hemû enfal û kîmyabarana Helebce û deverên din hemû ne ji bo Kerkûkê û ji bo sînorê çiyayê Hemrînê bû!?

Li min negre Doktor ez jî ji te dixwazim ku tu dev ji Ewropayê berdî û biçî li çiyayê Evdilezîzê li Sûriyê li gel hevalbendên xwe rawestî. Xetekê ji çiyayê Şingalê bikişîne ta Evdilezîzê û ji dewleta Sûriyê re bibêje ev sînorê Kurdistanê ye. Ferzend jiya îro baştir bi dest te nakeve.

Doktor dide xuyakirin ku tevgera kurdî li Sûriyê ji bo xwesteka nasnameya erebî dixebite û wê jî ji tevgerê re şermezarî dibîne.

Li vir jî ez dibînim ku mamosta şaş çûye. Tevgera kurdî ji bo mafên gelê kurd bi tevayî dixebite, ji berî ku nasnameyên Kurdan ji wan bistînin, tevger hebû. Û daxwaza ji bo nasnameyê di armancên wan de ne bû... Û ev zaraveyê ku dibêjin şermezarî ye Kurd daxwaza nasnama erebî dikin, bi angoya çima daxwaza nasnameya kurdî nakin. Ma gelo li herçar parçên Kurdistanê bil ji başûrê Kurdistanê, ne bi wî rengî ye?

Tevgera kurdî dixebite, ji bo dewleta sûriyê bi hebûna Kurdan mikur were û ka çi dikarin li Sûriyê bidest xin, hingê ev girêk jî tê vekirin û Kurd wê bikaribin nasnameya kurdî bidestxin û mafên ji wê jî bêhtir.

Em werin ser Qezafî û bergiriya Doktor jê re. Li gor dîtina min helwesta mamosta Cewadî weke helwesta dewleta Rûsyayê ye. Berpirsên Rûsan dibêjin ku pirsgirêka îro ya li Sûriyê rûdaye ti zirarê nagihîne dewletên derveyî Sûriyê. Vêce ji bo çi civata navneteweyî ji xwe re bike pirsgirêk. Bi angoya ku robarên xwînê jî ji kuştiyên gelê sûriyê biherikin, ji wan re ne xem û ne pirsgirêk e. Qezafî jî weke Saddam kuştar û enfal li dijî gelê Lîbyayê kirine. 1200 mirov di girtîgehê de yek li pey ê din û di 3 dempîvan de kuştine. Fermana ku di vî şerê xwe yê qirêj de daye, ji leşker û patoxwerên xwe re her tişt helal kiriye. Bi sedan rûmeta keç û dayikan şikandiye û bi ser vê qasê de jî, tu weke mirovekî kurd bindest û zorlêkirî li aliyê wî diktatorî radiweste û maf nade ku Qezafî ji desthelatiyê bê avêtin. Bi rastî ez dibînim ku ji me Kurdan re şermezarî ye, eger em maf bi mana kesên weke wî bidin...

# Nexweşiya şekir li cem jinên ducanî


Dr. Fikret Yildiz *

Wek tê zanîn gelek mirov bi nexweşiya şekir dikevin, pir ji wan kesan neçar in ku heta dawiya jiyana xwe di bin kontrol û dermankirina vê nexweşiyê de bin. Lê tişta ku divê em li ser rawestin ew e ku di dema ducaniyê de jinên bi wan re nexweşiya şekir derdikevin. Gelek ji wan jinan piştî ku zaroka xwe tînin dinê vê nexweşiyê derbas dikin, lê ev nexweşî bi hinek jinan re dîsa dom dike.

**Sedema bi jinên ducanî re nexweşiya şêkir derdikeve çi ye?**

**Dr. Fikret Yildiz:** Sedema ku bi wan jinan re şekir derdikeve nebûn an jî kêmbûna hormona însulînê ye. Însulîn ji pankreasê derdikeve û glîkozê ku di kezeba reş, adale û hîmên (hucre) rûn de ne kontrol dike. Dema jin bi zarok dimînin ostrojen û HPL (Humanplasental Laktogen) zêde dibin; ev jî pîleya şêkir bilind dikin. Di sêmehiya pêşîn de însulin kêm dibe û dû re heta zayîne ew bilind dibe. Eger dayik balê nedin xwarina xwe, qelew bin, hingê însulîn qîmê bedena wê nake û şekir bilind dibe. Ji sedî 85 dayik bi rêya parêzê di vê pirsgirekê de bi ser dikevin. Şekir tê sewiyeya normal. Le ji sedî 15 neçar dibin ku derziya însulinê bi kar bînin.

**Ji bo dayikê û zarok çi zirarên derketina şekir hene?**

Zarok di zikê dayikê de pir gir ango ji normaliya xwe hîn mezintir in (Makrozomi) û ava hevalzarok (plasenta) jî zêde dibê (Polihidramni). Wextê av zêde bibe hingê zarê zarok didire û ew zû tê dinê. Em vê ji bo tendurustiya zarok pir nebaş dibînin, ji ber ku hîn organên zarok baş mezin nebûne. Dema ku organên zarok baş mezin nebin wê wextê ew jî nikare bi rêya kezeba spî (Ciger) baş hilm bigire û bide. Wekî din jî dema ku zarok pir gir be dayîk nikare bi rêya normal wî bîne dinê, mecbûr e ku bi neştergeriya sezeryanê bîne dinê yan jî bi Vakumê û bireka mezin (Epizyotomi) a devê vajîna ye. Ew jî rîskên girîngin ji bo jinê. Bi wan zarokan re nexweşiya zerikê dertê, ew jî dikare zirarê bide mêjiyê zarok. Eger ku ew jin bêyî wan metodan zarok bînin dinê, dibe ku piyê wan bişkên û sinirê wan jî zirarê bibînin û felç bimînin.



**Eger dayîk balê nedin xwarina xwe, qelew bin, hingê însulîn têra bedena wê nake û şekir bilind dibe.**

**Derman kirin û çareseri bi çi şêwazê dibe?**

Ew jin bi rêya parêzê û derziyên însulinê tên derman kirin. Xwarina dayîkan dibe pirrengî be. Nexweşiya şekir a di dema ducaniyê de çiqas zûtir bê naskirin, zerarê wê jî ewqas hindik dibin. Avantajeke vê cureya nexwaşiya şekir ew e ku eger jin hertim biçin kontrolên xwe, zû tê nasandin û baş tên derman kirin. Bi vê jî him zarok û him jî dayik zirareka kêm dibînin.

**Jinên ducani herî dereng dibê kîjan demê kontrola şekir bikin?**

Kontrol çiqas zû be, ewqas baş e. Lê li gor standartên cîhanê berî 28 heftiyan dayîk bi testa Glîkoz Toleransê bê naskirin. Berî wê jî dikarin çêbikin hîn baş dibe. Dema ew jina ducanî hertim here kontrola xwe, jinekolog an jî ebe dikarin bi rêya kontrola mîzê, xwîne û ûltrasonê, nîşanên nexweşiya şekir nasbikin û zûtir wan derman bikin.

*Amadekirin: Zelal Çelîk*

* **Dr. Fikret Zengîn** *ji Bakurê Kurdistanê ye. Ew niha li Almanya dijî û bijîşkê psîkolojiyê ye.*

# Kurd ji jinên bejinzirav hez nakin

Bawer Çem Amed

Slogana “Jina delal jina bejinzirav e” di nava Kurdan de ne populer e. Ne jinên kurd dixwazin zeîf bibin û ne jî mêrên kurd ji jinên bejinzirav hez dikin. Diyetisyen Muhammed Şahîn, eşkere kir ku Kurd ji jinên bejinzirav hez nakin û jinên kurd jî naxwazin bibin sifir beden.

Jinên bejinzirav ku di medyaya tirk de pir zêde pesnê wan tê dayîn, di nava Kurdan de populerîteya xwe wenda kirin. Di nava Kurdan de şîretên ji bo jinan ên weke “Bi qasî qutiya niftikekî penîr bixwin”, “ji bo zeîfbûnê nan nexwin” û “nêzî şekir nebin” hema hema qet bi kêr nayên. Diyetisyen ji bo jinên ku dixwazin bejna wan zirav be û ji qelewiyê xilas bibin re dibêjin “pêşî tenduristî” û wiha dibêjin: “Ji her xwarinê hindik lê tim bixwin. Hûn nikarin bi birçîkirina zik û bi xwarineke yek cûre ji kîloyên xwe xilas bibin.”

**‘Em hêj bi meqarne re nan dixwin’**

Diyetîsyenê Nexweşxaneya Venî Vîdiyê, Dr. Muhammed Şahîn, ku rêya bejinzraviyê nîşanî jinên qelew dide, derbarê xwarina Kurdan û daxwazên zeîfbûna jinan de, ji Rûdawê re axivî. Şahîn bal kişand ku li Bakurê Kurdistanê zêdetir xwarinên bi rûn, karbonhîdrat û şekir tên tercîhkirin û wiha got: “Civaka me hê jî bi meqarne û birincê re nan dixwin. Ev cureya xwarinê bi mirov re kîloyên zêde çêdike. Dema mirov difikire ku birinc û meqarne bi rûnê nivîşk tê çêkirin, wê çaxê ev pirsgirêk du qat zêdetir dibe.” Şahîn diyar kir ku piraniya nexweşên wî yan bi gazinca nexweşiya dil, şekir, kolesterol an jî daxwaza zeîfbûnê tên ba wî û eşkere kir ku piraniya jinan ji bo zeîfbûnê serî lê didin. Şahîn da zanîn ku ew ti caran garantiya “tu yê ji sedî sed zeîf bibî” nadin ti kesî û got ku di zanistiyê de ev tişt ne pêkan e. Şahîn wiha axivî: “Diyet li gorî mirovan diguhere. Awayê jiyana mirovan pir girîng e. Em li vir awayê jiyana mirovan pirsyar dikin. Em serê pêşîn li çîroka wê guhdar dikin. Ev kes çi dike? Dixebite yan na? Piraniya wextê xwe li ku derbas dike? Çiqas pere qezenc dike? Bersiva van pirsan ji bo me pir girîng e. Çimkî divê em ji bo wan kesan cureyê xwarinan rêz bikin, lê ger ev kes nikaribin tiştên em dinivîsin bikirin, wê çaxê ti wateya diyetê namîne. Jixwe ne pêkan e ew diyet pêk bê. Çimkî ew kes jixwe nikarin wan tiştên ku em ê pêşniyar bikin bikire.”



**‘Bedena sifir naxwazin’**

Şahîn bal kişand ku li Amedê û bajarên kurdan ji jinên bejinzirav hez nakin û jixwe bi jinên vê erdnîgariyê re kompleksa “bedena sifir” tune ye. Şahîn nêrînên xwe wiha anî zimên: “Komeke marjînal ku bedena sifir dixwaze, hertim heye. Lê serê me bi vê pirsgirêkê re naêşe. Li herêmê ji jinên bejin zirav hez nakin. Jin jî naxwazin pir zeîf bin. Di vî warî de dikarim vê bêjim; li herêmê hejmara jinên ku ji bo sitandina kîloyan serî li me didin jî ne kêm in. Dayîna kîloyê bi serê xwe ne tenê di destê diyetîsyenan de ye. Divê pêşîn mirov lêkolîn bike ka di metabolîzmaya wan kesan de pirsgirêk heye yan tune ye. Tîroît di zeîfbûnê de cihekî pir girîng digre. Ji bo kesên ku dixwazin kîlo bistînin, em pêşî lêkolîna tîroîtê dikin.”

## Bêyî oksîjen em nikarin bijîn....
## lê çend oksîjen di nava hewayê de heye?



Tiştên pêtivî

- *Mûmek û darikekî agir*
- *Şûşeyek şîr*
- *Seniyek kûr û av*

**Taqîkirin:**
Seniyê tijî av bikin, mûmê bi darikê agir pêxin û deynin nîvê seniyê. Şûşê hêdî hedî deynin ser mûma ku pêketî ye. Hûnê bibînin mûm wê demekê bişewite û paşê vemire. Heya ku mûm vemire, ew ê şûşe jî tijî av bibe û av jî wê her berbi jor biçe nava şûşê. Di encamê de qasî ku hewa kêm dibe, ewqasî av nava şûşê dadigre. Ji pênca yekê şûşê wê ji avê bê dagirtin, ev jî oksîjena di nava hewa de dide xûyan. Yanî ji pêncan yekê hewayê oksîjen e.



# Li hember qîr û hawarên zarokan em çi bikin?



Qîrîn, xeyidîn û li ber çavê xelkê dana hewaran hinek caran weke nexweşiyek li cem piraniya zarokan derdikeve, nexasim di temenê 2-4 salî de.
Di rewşek wiha de em çi bikin baş e?
Li cihên qelebalix weke market, bazar û cihên giştî, dema zarok qeşeşîr (dodirme), pêlîstok, an jî çokelate bixwazin, pir caran bi qîr an jî xeyidîn vê xwestekê tînin ziman. Dema ev xwesteka wan pêk neyê, zarok li ber xelkê dikin qîr. Bê guman zarok dizanin dê û bavê wan li ber xelkê fedî dikin û wê xwesteka wan pêk bînin. Di rewşên wiha de, ya herî baş wê demê daxwaza wan neyê pêkanîn, girî û qîra wan zêde ciddî negirin. Di vir de qet fedîkirin jî pêwîst nake, ji ber ku zarokên herkesî hene û vê pirsgirêkê baş dizanin. Eger çend car ev xwestekê wan bê red kirin, ew ê neçar bibin dev jê berdin. Lê eger xwesteka wan pêk hat, ew ê berdewam bikin û weke çekek li hember dê û bav bikar bînin. Xala herî giring ewe, dema zarok diqîre an jî dixeyide, wê demê wî ciddî negirin, zêde eleqeyê nîşanî wî nedin. Heya zêde pê re xeber jî nedin û pê re nexeyidin, weke ku tiştek nebûbe tevbigerin. Dema zarokê dît ku kesek wî ciddî nagire, ewê dev ji helwesta xwe berde. Lê divê neyê ji bîr kirin ku paşî dem derbas bû, divê mirov şaştiya zarokê pê bide famkirin û wê rast bike.

## Tu dizanî navê Google ji ku hatiye?




Google navê hejmarekê ye, mîna deh, sed anjî hezar. Bi îngilîzî jê re Googol dibejin. Li gor çavkaniyan, matematîkzanê amerîkî Edward Kasner sala 1938ê daxwaz ji xwarziyê xwe yê 9 salî Milton Sirotta kir ku navekî ji bo hejmara 1 ligel 100 sifiran bibîne. Milton Sirotta jî Googol pêşniyaz kiribû. Damezrênerên Google jî li navekî ji bo makîneya xwe ya înternetê ya lêgerînê geriyan ku hejmara herî mezin ya înformasyonan destnîşan bike.

FÊRÎ KURDÎ BIBE

T ت



Tirî ترى

Amedekirina rûpela zarokan: Sevda Şafîk